

## Serokê gel an serokê parlemenê?

Di pêvajoya ku DYA û Rûsya li Sûriye'yê di nav hewldanên sazkirina binkeyên leşkerî yên ku bi taybetî kurdan eleqedar dikin û li Bakur şerrekî nû rû daye de, ji civîna 8. a ku bi mebesta çareserkirina pirsgirêka qeyrana Serokatiya Herêma Kurdistanê hat li darxistin û çavê hemû kurdan li ser bû ku encameke ku dawî li qeyranê bîne. Li gel vê yekê jî ji ber ku partiyên beşdarbûyî xalên çareseriyê daxistin dû hilbijardeyan û zemîneke çarenûsê ava kirin, hêviyên çareseriyê geş bûn.

R04-5


# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL    Hejmar: 71    21 - 27 Îlon 2015 basnews.com


Axîn Biro:

## Pergal derbê li hunerê dixe



R16





# Rêya Peşmergeyên Roj vedibe

Derbasbûna Peşmergeyên Roj bo xaka welat û pêkanîna mercên peymanên Duhok û Hewlerê ya navbera PYD û ENKS'ê, di civîna sê qolî ya di navbera Barzanî, Muslim û rayedarên amerîkî herçend careke din hat rojeve jî, ji layê PYD'ê dengên neênî dertên. Koordinasyona Kantonên PYD'ê di daxuyaniyekî de got; "Nûçeyên derbarê derbasbûna Peşmergeyan ne rast in."

Li gor hin çavkaniyên agahdar, rayedarên Amerîkî Salih Muslim hişyar kirine ku eger ew rê nedin Peşmerge, wê Amerîka jî alîkariya xwe ya bo YPG'yê qut bike û êdî piştgiriya wan neke. Herwiha rayedarên DYA'yê piştrast kirin ku hin yekîneyên wan yên pispor ji bo perwerdeya şerwanên YPG'ê û koordînasyona şerê li dijî DAİŞ'ê derbasî Rojava bûne.

R02 - 03

## "Kurdistan stargeha kêmnetewan e"

R07

Kirmanckî

## Birayîya hezar serrane

R11

Dîrok

## Kurd û axiriya Lazistanê

R15



## Av li Gola Urmiyê çikiya

R14

## "Lozan despêka pişavtinê ye"

Hinkêrê Beşa Dîrokê ya Zanîngeha Mûşê ya Alparslanê Ercan Çağlayan, bi rîwangeyeke dîrokî vê bîrdoziyê bi polîtîkayên navendperest ên dema Mehmûdê II. ve girê dide û diyar dike ku piştî serhildana Şêx Seîd ev polîtîka bi şêweyekî sosret li ser kurdan vediguhere polîtîkayên hişt ên bişavtinê.

R10

Selam Abdullah:

## Divê medya beşdarî proseya serxwebûnê bibe



R08-9

## Yasaya HAN û helwesta kurd

Li Parlamena Iraqê, Yasaya Gardên Mahallî ango Hêzên Asayîşa Niştimanî (HAN) piştî çend taloqkirinan, dîsa hate rojeva parlemanê. Yasay ji alî DYA û Îngilîstanê, aliyên sunne û her wiha Serokwezîr Haydar Îbadî ve tê piştgirîkirin. Di vê babetê de sekna her aliyan diyar e, lê belê ya ne diyar sekna kurdan e.

R06

Rojava

# DYA bo derbasbûna Peşmerge pêdagir e

Hêmîn Salih



Derbasbûna Peşmergeyên Rojava bo xaka welat careke din hate rojeve, lêbelê di heman demê de dîsa nûçeyên nakok balavbûn. Herçend di derbarê mijarê de di navbera PDK, PYD û rayedarên Amerîkî de civîn hatin lidarxistin û bahsa lihevhatinekî jî tê kirin, li layê PYD dengê neênî dertên. Koordinasyona Kantonên PYD'ê di daxuyaniyekî de got; "Nûçeyên derbarê derbasbûna Peşmergeyan ne rast in."

Piştî civîna ku di 15'ê Îlonê de li bajarê Selahadîn, li Ofîsa Serokatiya Herema Kurdistanê, di navbera Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, Serokê PYD Salih Muslim û Berpirsê Karê Dervê yê DYA'yê Brett McGurk, çav li rê bû ku biryara çûndina Peşmergeyan bê daxuyandin.

Lêbelê piştî civînê ku Serokê PYD Salih Muslim çû Qendîlê û li gel rayedarên PKK'ê civiya roja din li ser navê Koordînasyona Kantonên Rojava hat daxuyandin ku mijara derbasbûna Peşmergeyan nehatiye rojevê û rêvebiriya Kantonan vê yekê qebûl nake.

Li aliyê din li gor hin çavkaniyên agahdar, di civînê de rayedarên Amerîkî bi awayeke eşkere Salih Muslim hişar kirine ku eger ew rê nedin Peşmerge, wê Amerîka jî alîkariya xwe ya bo YPG'yê qut bike û êdî piştgiriya wan neke. Herwiha rayedarên DYA'yê piştrast kirin ku hin yekîneyên wan yên pispor ji bo perwerdeya şerwanên YPG'ê û koordînasyona şerê li dijî DAÎŞ'ê derbasî Rojava bûne. Li gor çavderên siyasî rêvebiriya Obama berî hilbijartinên Mijdarê herî kêm dixwaze li dijî DAÎŞ'ê serkeftinekî mezin bidest bixe û Mûsil û Raqa'yê ji destê DAÎŞ'ê derxîne da ku di hilbijartinan de ev serkeftinê wek qertekî bikarbîne. Lewra ew ji bo li dijî DAÎŞ'ê operasyonekî serkeftî dilezînin û ji ber vê yekê jî dixwazin hêzên kurd li sahayê hevkarî bikin da ku di demekî kin de encam verbigrin.

Li aliyê din li gel xeberên ku hêzên Rûsya ji bo piştgiriya rejîma Esad hatine Suriyeyê, û DAÎŞ'ê li Hesekê dest bi êrişên ser YPG'ê kirine jî, PYD di derbarê alîkariya hêzên ser bi ENKS'ê ve rê nade ku ew jî tevlî parastina Rojava bibin. Di encam de çavderên siyasî ji têkiliyên PYD û DYA'yê gumanbar in ku di rojên pêş de ev têkilî xerabibin û DYA rû li PYD vegerîne.

Li gel vê yekê jî alî di derbarê mijarê de daxuyaniyên cuda didin. BasNûçe'yê bi têkildarên mijarê re axifî.

**Hewramî: Pêşmerge wê derbasî Rojava bibin**

Berpirsê Pêwendiyên Derve yê Partiya Demokrata Kurdistanê, (PDK) Hêmin Hewramî derbarê mijarê de ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku Hêzên Pêşmerge yên Rojavayê Kurdistanê wê derbasî Rojava bibin û civîna sêqolî jî ji bo vê hemagengiyê birêve çûye. Her wiha piştî civînê ya di navbera Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û Hevserokê PYD'ê û Mûsteşarê Karê Derve yê DYA'yê Brett McGurk, Hêmin Hewramî li ser hesaba xwe ya Twitterê rahihandibû ku Pêşmergeyên Rojava ku li Başûrê Kurdistanê perwerdeya leşkerî wergirtine dê herin Rojavayê Kurdistanê. Hewramî tekez kir, ku Pêşmerge dê bo parastina Rojavayê Kurdistanê û şerê li dijî DAÎŞê vegerin Rojava. Her wiha di berdewamiya axaftina xwe jî de Hêmin Hewramî amaje bi wê yekê jî ki ku nûnerên DYA'yê tekez dikin ku divê Pêşmerge li Rojavayê Kurdistanê bin û li hember DAÎŞ'ê şer bikin.



Hêmin Hewramî

Li gorî malpera Serokatiya Herêma Kurdistanê jî Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Hisên di daxuyaniyekê de ragihand ku "Di 15 Îlonê de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li Selahedînê pêşwaziya Salih Muslim û şanda ligel wî kir. Di civînê de ku şanda Welatê Amerîka jî tê de amadebûn behsa rewşa dawî ya navçeyê, hevkariya şerê li dijî DAÎŞ'ê û rêxstina kar di bereyên şer de hatiye kirin."

**Brîmo: Barzanî di dewrê de ye**

Li hêla din Endamê Desteya Rêveberiya PDK-S Nûrî Brîmo jî ji BasNûçe'yê re li ser mijara derbasbûna Pêşmergeyan got; "Li gor zanyariyên me civîn ji bo derbasbûna Pêşmergeyan birêveçû. Em wisa dizanin ku cenabê Mesûd Barzanî ji bo vê meseleyê di nava hewldanan de ye. Hewl hene ku Pêşmerge vegerin Rojava."

Nurî Brîmo diyar kir ku zêdetirî 7 hezar Pêşmergeyên Rojava ji hêla Zêrevanî ya Pêşmergeyan hatine perwerdekirin û ew li hember DAÎŞ'ê şer dikin. Her wiha Nurî Brîmo, li ser helwesta PYD'ê jî rawestiya û eşkere kir ku PYD nerazî ye ku Pêşmerge derbasî Rojava bibin.

Brîmo Peymana Hewlêr û Duhokê jî bi bîr xist û da zanîn ku Barzanî ji bo hemahengî û yekgirtina partiyên Rojava hewl daye lê belê PYD ji vê yekê dûrketiye. Li ser pirsa peyamnêrê me ya "Eger Pêşmerge derbasî Rojava bibin gelo ew ê têkevin bin ala YPG'ê?" jî Nurî Brîmo wiha bersiv da; "Pêşmerge di bin ala Kurdistanê şer dike. Rojava jî Kurdistan e. Ji bo alozî dernekeve û Rojava bigihê aramiyê Mesûd Barzanî di dewrê de ye. Heta ku hemahengi çênebe Mesûd Barzanî jî Pêşmergeyan naşîne."

**PYD: Hewce nake Peşmerge werin Rojava**

Rawêjkarê Serokê PYD'ê Salih Muslim, Sihanok Dîbo jî ji li ser civîna sêqolî ya di 15 Îlonê di navbera Serokê Herêma Kurdistanê Serokê PYD'ê Salih Muslim û Mûsteşarê Karêderve yê DYA'yê Brett McGurk rawestiya û da zanîn ku



Nûrî Brîmo

rayedarên PDK'ê û ENKS'ê eşkere dikin ku civîn ji bo derbasbûna Pêşmergeyan a Rojava birêve çûye, lê belê ew ne rast e û di civînê de mijara Pêşmergeyan ne hatiye rojevê. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Sîhanok Dîbo, li ser derbasbûna Pêşmergeyan rawestiya û wiha berdewam kir: "YPG'ê xwe îspat kiriye. Hewce nake ku tu hêzên din derbasî Rojava bibin û bibin sedema nakokiyan. Em razî nînin Pêşmerge derbasî Rojava bibin. Eger werin, ew dikarin di bin ala YPG'ê de bên û li Rojava bi cih bibin. Berê jî me helwesta xwe eşkere kiribû."

Her wiha Dîbo pirsa peyamnêrê me ya "Gelo di warê parastina Rojava de hebûna komên weke Burkan el Ferad û Hêzên Sotoro, Asayîşa Ereban nabin nakokî? Hatina Pêşmergeyan ew ê çawa bibe nakokî" jî wiha bersivand; "Hêzên li Rojava hemû di bin kordînasyona YPG'ê de ne. Li hember DAIŞ'ê ew hêz di hemahengiyê de ne. Em naxwazin ew şerê li Başûr çêbûye li Rojava jî di navbera hêzên kurd de çê bibe. Tecrûbeyeke nebaş e."

Zêdetir ji 4 salan e li Rojava ji bilî YPG'ê bi navê; Hêza Sotoro, Siwar el Reqqa, Artêşa Azad, Burkan El Ferad, Hêzên Artêşa Sûriyê, Hêza Jinên Bet-Nahrîn, Milîşeyên Ereban, Hêza NDF bicihbûne. Li gel hêzên kurd gelek komên çekdar jî li Rojava bi cihbûne û gelek caran êrîşên ser xelkê kurd jî bi destê wan tê kirin. Weke ku tê zanîn destê Burkan el Feradê jî di êrîşa dawî ya li ser Kobanê de hatibû îsbatkirin.

### Hêzên rewa yên Rojava!

Li hêla din Kordînasyona Giştî ya Serokatiya Meclîsên Kantonên Rojava bi daxuyaniyek belav kir û çûna derbasbûna Pêşmergeyan derewand û got di planên Rêveberiya Xweser de tiştekî wiha tune ye. Di daxuyaniya kordînasyonê de bala wê yekê hat kişandin ku ji bilî YPG-J û Hêzên Asayîşê hêzên din ê li Rojava ne hêzên rewa nin. Li gel vê daxuyaniya Kordînasyona Giştî ya Serokatiya Meclîsên Rêveber ji Hêza Sotoro, Siwar el Reqqa, Artêşa Azad, Burkan El Ferad, Hêzên Artêşa Sûriyê, Hêza Jinên Bet-Nahrîn, Milîşeyên Ereban, Hêza NDF'ê li Rojava henin û heta niha rayedarên "Rêveberiya Xweser" li hember hebûna wan tu daxuyanî belav nekirine.

Di berdewama daxuyaniya Koordînasyona Kantonan de wiha tê gotin: "Wekî Rêveberiya Xweseriya Demokraîtk a Rojavayê Kurdistanê em her tim hewl didin ku têkiliyên xwe û karê hevbeş bi hemû parçeyên din ên Kurdistanê re xurt bikin, Rêveberiya Xweser bi hemû hêzên xwe yên wekî Yekîneyên Parastina Gel û Yekîneyên Parastina Jin, hêzên Asayîşa Rojavayê Kurdistanê, hêzên Erka Xweparastinên herêmên Rojava û gelê wê diparêzin, li Rojava tenê ev hêzên me anîn ziman rewa ne."



### Gelo Hêzeke taybet a DYA'yê li Rojava ye?

Li aliyê din rayedarên Artêşa DYA'yê jî eşkere kir ku hêzeke taybet a wî welatî derbasî Rojava bûye û di şerê DAIŞ'ê de ew ê alîkariya şervanên YPG'ê bikin. Fermandeyê Hêzên Navendî yên DYA'yê (CENTCOM), General Lloyd Austîn tevlî civîna Komîsyona Hêzên Çekdar a Senatoya Amerîkayê bû û agahî da endamên komîsyonê. Lloyd Austîn eşkere kir ku hêzeke taybet a DYA'yê derbasî Rojavayê Kurdistanê bûye û di şer û operasyonên li dijî DAIŞ'ê de ewê alîkariya YPG'ê bikin.

Austîn agahiyên zêde li ser hejmara wê hêza DYA'yê û dema derbasbûna wê hêzê neda. Wî rayedarê leşkerî yê DYA'yê diyar kir ku DYA'yê pêşniyara avakirina herêma aram yan herêma dijefirînê li nav axa Sûriyê nake û got, "divê ew herêm ji aliyê hêzên bejahî ve were parastin."

Televîzyona DYA'yê ya NBC jî li ser zarê rayedarên Pentagonê eşkere kiriye, ew hêza DYA'yê ya derbasî Rojava bûne tevlî şer nabe û ew ê tenê rola şêwirmendiyê bilîze.

### YPG, Pentagonê jî derewand

Berdevkê YPG'ê Rêdûr Xelîl, derbarê leşkerên Amerîkayê yên ku çûne Rojava de ji axivî û got; "Leşkerên Amerîkayê nehatine Rojava û tu daxwaziyeke me çênebûye. Di tekoşîna li hemberî DAIŞê de tekiliyên me û Amerîkayê di asteke baş de ne."

Di derbarê nûçeyên derbasbûna "Pêşmergeyên ku li Başûrê Kurdistanê perwerde bûne dê vegerin Rojava" jî Xelîl wiha got: "Ev agahî ne rast e. Pêşmerge dê neyên Rojava."

### "Rojava meseleya netewî ya kurda ye"

Serokê Navenda Aştiyê yê Lêkolînên Navdewletî ya li Rojhoilata Navîn Dr. Veysel Ayhan jî li ser geşedanên dawî yên li Rojava, civîna sêqolî ya di navbera rayedarên DYA'yê PYD'ê û Mesûd Barzanî de rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Veysel Ayhan amaje bi wê yekê kir ku Rojava bûye meseleyeke navdewletî û hêzên navdewletî di şerê li hember DAIŞ'ê de kurdan weke muhatab dihesîbînînin û dixwazin bi kurdan re di peywendiyê de binin. Her wiha Ayhan li ser derbasbûna Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê jî rawestiya û daxuyand ku DYA'yê eşkere dike ku li Rojava ji bilî YPG'ê dixwaze Pêşmerge jî li Rojava bin û ew jî tevlî şerê DAIŞ'ê bibin. Her wiha Dr. Veysel Ayhan li ser peywendiyên partiyên siyasî yên kurd jî rawestiya û wiha berdewam kir: "Ji zû ve derbasbûna Pêşmergeyan di rojevê debû. Wisa dixuye ku dema wê hatiye. Divê ev yek ji zû ve pêk bihata. Rojava meseleyeke neteweyî ya kurda ye. Ne meseleyeke partiyeke siyasî ye. Rojava ne qada tu kesî ye. Tu hizb nikarin siyaseta xwe li ser wê ferz bikin. Eger ji bo parastina destkeftiyên Rojava hewldan hebin tu partiyên siyasî, tu pêşengên partiyan nikarin li hember vê yekê rawestin." Veysel Ayhan da zanîn ku eger çûna Pêşmergeyên Rojava pêk were jî divê koordînasyonek bê avakirin û eger neyê avakirin dê kêşe derkevin holê.

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Dr. Ayhan amaje bi wê yekê kir ku divê hemû partiyên siyasî dev ji berjewendiyên xwe yên siyasî berdin û ji bo meseleyên neteweyî tevbigerin. Her wiha Dr. Veysel Ayhan li bal kişand ser siyaseta kurdan a navxweyî jî û da zanîn ku ya ku ji kurdan re demildest pêwistî bi siyaset û artêşeke yekgirtî û neteweyî ye. Ayhan "şerê birakujiyê" yê di salên 90'î di navbera hêzên kurdan de pêk hatibû jî bi bîrxist û ragihand ku çi li Başûrê Kurdistanê çi jî li Rojava be divê artêşeke kurdan a yekgirtî û neteweyî hebe.

### Nefta Rimêlanê û şerê DAIŞ'ê

Li hêla din şer û pevçûnên di navbera DAIŞ û YPG'ê jî de berdewam dikin. Li bajarê Hesekê ya Rojava di navbera şervanên YPGê û çekdarên rêxistina DAIŞê de şer û pevçûnên dijwar didomin. Bakur û rojavayê bajarê Hesekê jî di bin kontrola YPG'ê de ye. Di tîrmehê de rejima Esad û YPG'ê li hember DAIŞ'ê li Hesekê operasyon dabûn destpêkirin û DAIŞ'ê ji derdorê derxistibûn. Her çend ji sedî 85'ê bajarê Hesekê di destê YPG'ê û rejima Esad jî de bin êrîşên DAIŞ'ê yên ser herêmê berdewam dikin.

Li gor agahiyan, şer û pevçûn di navbera şervanên Yekîneyên Parastina Gel (YPG) û endamên rêxistina DAIŞ'ê de li başûrê rojavayê bajarê Hesekê de diqewime. Herî dawî beriya bi hefteyekê DAIŞ'ê bi wesayîteke bombekirî êrîşî ser Hesekê kir di encama wê êrîşê de 2 jê şervan 14 kesan jiyana xwe ji dest dabûn. Di şerê li hember DAIŞ'ê de rejima Esad û PYD' di nava hemahengiyê de nin û bi hevre li DAIŞ'ê didin. Armanca êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Hesekê jî ew e ku nefta herêma Rimêlanê kontrol bike. Her wiha zêdetir ji 250 bîrên nefte yê li Rimêlanê di bin kontrola YPG'ê û rejima Esad de nin û li herêmê derxistina neftê berdewam dike.

### Xeta Cerablûs û Merayê ji alî Ahrar û Nûsra'yê hatiye dorpêçkirin

Li hêla din li derdora xeta Cerablûs û Merayê ya navber bajarên Efrîn û Kobanê jî de geşedanên nû hene. Rêxistina Ahrar El Şam û Cebhet El Nûsra dest bi dorpêçkirina bajarê Efrînê kirin. Rojnameger Mihemed Rojê li Efrînê ji BasNûçe'yê re got herdû rêxistinên navborî dest bi dorpêçkirina bajarê Efrînê kirine. Fermandarê YPG'ê yê Kobanê Şoreş Hesen jî eşkere kir ku li herêmê bi hewldanên Tirkiyê'yê Ahrar el Şam û Cebhet el Nûsrayê li hember wan dest bi şer kirine û ew rêxistin piştgiriyê ji Tirkiyê distînin. Di berdewamiya axaftina xwe de Şoreş Hesen bal kişand ser rewşa dawî ya li derdora Cerablûs û Merayê jî û wiha axivî: "Êrîş li ser gelê me û li ser ereban hene. Em van êrîşan qebûl nakin. Piştgiriyê ji Tirkiye'yê distînin. Lêbelê ew ê têk herin. Em nahêlin çete têkevin xaka me."

### Qrîza koçberan berdewam e

Li aliyê din koçberiya xelkê Rojava ya ji bo Ewrûpa jî berdewam dike. Li gor zanyariyan nivê gelheya Rojava welat terikandine. Herî dawî Macaristanê sînorên xwe mîlîtarîze kir û rê li ber koçberan girt da ku ew derbasî Ewrûpayê bibin. Herî dawî di 2'yê îlonê de cendekê zarokê bi navê Alan Kurdî yê li ber peravên bajarê Bodrûmê hat dîtin raya giştî ya cihanê rakiribû ser piyan. Piştî vê karesatê YE'yê biryar dabû ku 120 hezar penaberên li xaka Ewropa ji aliyê dewletên endam ve werin qebûlkirin.

Her wiha hat zanîn ku ew ê bi beşdariya Serok û Serokwezîrên welatên Yekîtiya Ewropayê ji bo guftûgoyên li ser krîza koçberan di 23'ê mehê de li Brukselê civînek birêve biçe. Ev lûtkeya taybet dê li ser daxwaza Serokwezîra Almanyayê Angela Merkel û Serokwezîre Nemsayê Werner Faymann bicive.

## Ji civîna dawî dû bijarde:

# An bi raya gel serokê lawaz an jî

Kalê Badî

Di vê pêvajoya ku DYA û Rûsya li Sûriyeyê di nav hewldanên sazkirina binkeyên leşkerî yên ku taybet kurdan eleqedar dikin û li Bakur şerrek nû rû daye de, ji civîna 8. a ku bi mebesta çareserkirina pirsgirêka qeyrana Serokatiya Herêma Kurdistanê hat li darxistin û çavê hemû kurdan li ser bû jî encameke ku dawî li qeyranê bîne derneket. Li gel vê yekê jî, ji ber ku partiyên beşdarbûyî xalên çareseriyê daxistin dû hilbijardeyan û zemîneke çarenûsê ava kirin, hêviyên çareseriyê geş bûn.

Nûnerên partiyên siyasî yên ku ji bo çareseriya qeyrana Serokatiya Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) li hev civiyabûn gaveke mezin avêtin. Tê gotin ku nûnerên 5 partiyên siyasî yên beşdarên hikûmetê ku li Hewlêrê, li Hola Konferansê ya Saad Abdulah kom bûn, li ser planeke dû hilbijardeyî nêzîkî encamê bûne û bi vê encamê tê payîn ku di kombûna 9. a ku wê di 6'ê Cotmehê de bê lidarxistin de bigihîjin encamekê. Hate ragihandin ku di vê civînê de YNK, Tevgera Goran, Yekgirtû û Komele, ji PDK'ê re pêşniyaza 'Yan Serokek ji alî gel ve bê hilbijartin lê desthilata wî bê kêmkirin, yan jî serokek ku ji alî parlamenê ve bê hilbijartin lê desthilatên wî yên niha berdewam bin' kirine û PDK jî wê vê pêşniyazê di asta polîtburoyê de binirxîne û bersivekê bide.

Piştî civînê Serokê Dîwana Serokatiya RHK'ê Fûad Huseyn axivî û ragihand ku partiyên siyasî gihanekeke grîng derbas kirine û pir nêzîkî lihevkirinê bûne, wê PDK, dû bijardeyan di asta polîtburoyê de binirxîne û bi vê encamê re egerî heye ku di civîna 9. a ku wê piştî Cejna Qurbanê bê lidarxistin de qeyran bê çareserkirin. Beriya vê civînê Endamê Polîtburoya YNK'ê Ferîd Eseserd gotibû ku çar partiyên din heta radeya sînor paş de gav avêtine û êdî ew ê gav nehavêjin. Eseserd anîbû ziman ku ger PDK ji van dû bijardeyan yekî pesend neke, egerî heye ku civîna 8. bibe civîna dawî û gotibû: "Hêviya me ew e ku PDK biryarek bide"

**Çareserî ma civîna 9.**

Mamosteyê Beşa Ragihandinê ya Zanîngeha Selahaddînê Doç. Dr. Ridwan Badînî, di nirxandina xwe ya li ser qeyranê û hewlên çareserkirina wê ya ji bo BasNûçeyê de destnîşan kir, ji ber ku ji berê ve dîroka civîna 9. hatibû diyarkirin, di civîna 8. de, partiyan daxwazên xwe yên dawî nivîskî amade kirine û di vê civînê de pêşkêş kirine û di encama vê civînê de partiyan li ser domandina 2 salên din a Serokatiya Mesûd Barzanî û parastina desthilatên wî yên di derbarê erkên leşkerî de li hev kirine û got: "Lê belê li ser desthilatên Serok ên di derbarê erkên wî yên pêwendiyên navneteweyî de nîqaş dom dikin." Badînî da zanîn ku civîna 8. bi pêşkêşkirina rîwangeyên partiyên siyasî meşiyaye û ji bo encama dawî ya çareseriya qeyranê civîna 9. destnîşan kir.

Parlamentê Tevgera Goran Letîf Mistefa jî di derbarê mijarê de ji BasNûçeyê re ragihand ku pesendkirina yek ji yan hilbijardeyan rêya herî dawî ya çareseriya qeyranê ye; Lewre ji ber vê qeyrana siyasî ya serokatiyê gelê Kurdistanê pir tengezar bûye û her çiqas hêviya çareseriyeke mayînde bike jî gel dixwaze bi çi awayî dibe bila bibe, ev qeyran bi dawî bibe. Mistefa diyar kir ku şerê DAIŞ'ê û neşandina para budceya RHK'ê ya ji alî Bexdayê gelê Başûr bi astengiyên dijwar ên jiyanê re rû bi rû hiştiye, ev astengî di çapemeniyê de pir nahatine ber çavan û li gel van astengiyan, rûdana vê qeyranê rewşa gel pir dijwartir kirî ye. Mistefa got: "Ji ber vê yekê gelê başûr ji çawaniya meseleyê zêdetir, bi çi awayî bibe jî daxwaz dike ku qeyran bê çareserkirin"



**Hewla Rojava: Civîna Barzanî Muslîm û DYA**

Li Rojhilatanavîn hewla Rûsya ya li gel avakirina binkya deryayî ya li Tartûsa Sûriyeyê, avakirina binkeya hewayî û bicihkirina leşkerên xwe ya Lazkiye'ya ku 150 kîlometr nêzîkî herêma ku Tirkiye hewl dide li wê derê herêmeke tampon ava bike dikaribe hevsengiya leşkerî û siyasî ya herêmê biguherîne jî, li hemberî vê DYA jî kete nav hewldanên ji bo Rêveberiya Rojava nêzîkî ya Başûr bike. Bi vê mebestê, li Hewlêrê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Hevserokê PYD'ê Salih Muslîm li hev civîyan û di beşa duyem a vê civînê de Cîgirê Rawêjkarê Wezareta Derve yê DYA'yê Brett McGurk, Serbalyozê Bexdayê yê DYA Stuart Jones, Fermandarê Hêzên Taybet ên DYA James Terry, Fermandarê Hêzên Taybet ên li Iraqê yên DYA Tony Thomas û hin pisporên karûbarên leşkerî jî beşdar bûn.

Piştî vê civînê, her çiqas Rêveberiya Rojava red bike jî Berpirsê Karên Derve yê PDK'ê Hêmin Hewramî daxuyand ku wê Pêşmergeyên rojavayî yên Hêzên Rojê yên ku ji alî Wezareta Pêşmerge ve hatibûn perwerdekirin derbasî Rojava bibin û wê li gel YPG'ê bi DAIŞ'ê re şer bikin. Ev yek dide xuyakirin ku di ve mijarê û gellek mijarên din de danûstendin dom dikin. Her wiha Hewramî, da zanîn ku Barzanî û Muslîm li ser bicihanîna xalên Peymana Duhokê ya ku çend meh berê di bin serperiştiya Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî de, di navbera TEV-DEM û ENKS'ê de hatibû îmzekirin û şkestê xwaribû jî danûstendinan kirine.

Di derbarê mijarê de Endamê Politburoya PDK-S'ê Nûrî Brîmo ji BasNûçeyê re ragihand ku ji bo 3 hezar Pêşmergeyên rojavayî yên ku di eniya Mûsilê de li dij DAIŞ'ê şer dikin vegerin Rojava hewldan hene, lê belê YPG dibe asteng. Brimo, da zanîn ku ji bilî van Pêşmergeyan komeke din ya Pêşmergeyên rojavayî ku niha ji bo derbasî Rojava bibin têne perwerdekirin hene.

**Badînî: Rûsya berê xwe dide Rojhilatanavîn**

Mamosteyê Beşa Ragihandinê ya Zanîngeha Selahaddînê Doç. Dr. Ridwan Badînî ji derbarê civîna sêqolî ya di navbera Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, Hevserokê PYD'ê Salih Muslîm û Şandeya Payebilindên Leşkerî yên DYA'yê de jî pirsên me bersivand angaşt ku lijneyeke navneteweyî ya veşartî ku peywira wê xurtkirina koordînasyon û diyaloga navbera hêzên dij-DAIŞ'ê ye heye û ev civîna sêqolî jî di encama xebatên vê lijneyê de pêk hatiye. Badînî, got: "Di vê civînê de li gel ji nû ve rojanekirin û bi cih anîna xalên Peymana Dûhokê, her wiha li ser babeta pêkanînên YPG'ê yên Şengal, Xaneqîn û Kerkûkê yên ku wek destwerdana Başûrê Kurdistanê têne dîtin jî hatine nîqaşkirin û ji Muslîm hatiye xwestin ku ev pêkanîn rawestin.

Li ser pirsa me ya 'Gelo hewldana Rûsya ya avakirina binkeyên leşkerî bû sedemê vê civîna sêqolî? Jî Badînî da zanin ku Serokê Rûsya Viladimir Putin berê jî gotibû ku eniya ku li dij DAIŞ'ê şer dike ne ewçend hêzdar e ku DAIŞ'ê têk bibe û wiha dom kir: "di hevdîtina telekonferansê de endamekî Konseya Bergiriyê ya Rûsyayê ji min re got ku Rûsya dilniyaz e ku DAIŞ bê tunekirin, lê belê şêwe û hêza tekoşîna ku niha li dij DAIŞ'ê tê meşandin têr nake ku DAIŞ têkbiçe, hemû barê vê tekoşînê li ser milên kurdan e, lê belê di qada navneteweyî de ne RHK'ê û ne jî PYD muxatab nayê dîtin, ev yek nakokiyek mezin peyda dike û ji ber vê yekê wê Rûsya jî beşdarî vê eniyê bibe." Badînî nirxandinên Endamê Konseya Bergiriyê ya Rûsya wek nirxandineke rasteqîn destnîşan kir û dom kir: "Di praktîkê de barê herî giran ê şerê li dij DAIŞ'ê li ser milên RHK'ê ye, lê belê alîkariyên çekdarî yên hêzên navneteweyî jî bi ser Bexdayê ve têne kirin. Ji ber ku hêzên navneteweyî PKK'ê wek rêxistineke terorê dibînin, ji ber pêwendiya wê ya bi PKK'ê re, PYD ji bi heman nêzîkahiyê re rû bi rû ye. Di serdana Salih Muslîm ya dawî ya Moskowê de Rûsyayê jî pêşniyaz li Muslîm kir ku sînorekî têxin navbera xwe û PKK'ê û ji ber vê yekê Salih Muslîm hewl dide ku vê

# bi raya parlamenê serokê bihêz

pêwendiyê veşêre"

**'Herî zêde kurd ji bo yekîtiya Iraqê xebitîn lê belê nebû...'**

Di hevdîtina Lijneya Parlamena Ewropa(PE) ya ku ji Endamên PE'yê Charles Tannock, David Campbell Bannerman, Ana Gomez û Tamás Meszerics pêk dihat û ji bo hin çavdêriyan hatibûn Herêma Kurdistanê de jî Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî, da zanîn ku RHK'ê li dij DAIŞ'ê û pirsgirêkên penaberiya ku DAIŞ bûye sedem, tekoşîneke deri hêza xwe dimeşîne, lê belê di vê tekoşînê de pêdiviya RHK'ê bi alîkariya Ewropayê heye û ger ku civaka navneteweyî di van mijaran de berpirsyariyên xwe zêde bike, wê ev pirsgirêk hêsantir bêne çarserkirin. Barzanî anî ziman ku terora li herêmê gefa li ser hemû dinyayê ye, ji ber vê terorê nêzîkî 2 millyon kesan xwe spartine RHK'ê û ji ber vê yekê pêdiviya RHK'ê bi piştgiriya cîhana şaristanî heye. Barzanî di derbarê pêwendiyên Iraq û RHK'ê de jî axivî, diyar kir ku Iraqa nû li gor sirûştiya xwe nehatiye sazûmankirin, di pêvajoya vê sazûmanbûnê de hin pirsgirêkên ku hê jî nehatine çareserkirin peyda bûn û dom kir: "Kurd, ji bo sazûmaneke federal û demokratîk pir xebitîn, lê belê hin pirsgirêkên ku ji binemaya dîrokî û siyasî peyda bûn, bûne asteng û qasidê van pirsgirêkan jî Rêveberiya Bexdayê ye" Di hevdîtinê de endamên lijneya PE'yê jî anîn ziman ku ew di kêliya çavdêriyên xwe yên li Herêma Kurdistanê pir matmayî bûne, ji ber ku hembêza xwe ji penaberan re vekiriye RHK'ê pîroz kirin pêwîstî bi wê yekê kirin ku 'Divê şerê ku Hêzên Pêşmerge li dij DAIŞ'ê dimeşîne ji bo gellek welatan bibe mînak.

**Barzanî: Pirsgirêka penaberan bi asayîşa herêmê çareser dibe**

Mesûd Barzanî'yê ku di nav ewqas çûnhatina dîplomatîk de bi desteya Belçîkayê ya ku serokatiya wê Senator Alain Destexhe dikir jî hevdîtinek kir. Mesûd Barzanî got ku nêzîkbûna RHK'yê ji hemû derdorên olî û nijadî re wekhev e, destê aştiyê dirêjî hemû derdoran dike û liKurdistanê tu carî cudakerî di navbera derdorên olî, nijadî an mezhebî de tune. Derbareyê penaberên ku piştî dîmenên Alanê piçûk ê Kobanêyî û dû re jî penaberên nijdî Ewropayê kiribûn bûn rojeva sereke ya cîhanê de Barzanîgot ku da ku penaber bikaribin vegerin malên xwe divê cih û warên ku lê dijîn ji terorê bên paqijkirin û li van herêman ewlehî bê avakirin. Her wiha Barzanî ji bo alîkariya wan a ji Pêşmergeyan re bi navê lijneyê sipasiya xwe ji gel û hikûmeta Belçîkayê re pêşkêş kir. Senator Alain Destexhe jî bi navê lijneyê axivî û got ku îro, Pêşmerge, bi têkoşîna serkeftî a li dijî terorîzmê, mîrata ku Mele Mistefa Barzanî bi têkoşîna Kurdistanê afirand dixemilîne û geş dike û dilsoziyeke taybet a gelê Belçîkayê bo kurdan heye. Destexhe her wiha anî ziman ku ji ber ku digel bêterfetiyan deriyên xwe ji penaberan re vekir civaka navneteweyî deyndarî RHK'yê ye û ji ber vê jî divê YE alîkariyên xwe yên ji RHK'yê zêdetir bike.

**Serxwebûn di rojeva Forûma 25. a Aboriyê de ye**

li ser vexwendina 252emîn Forûma Aboriyê ku bi beşdarbûna CEO û rayedarên dewletên Ewropa, Emerîka û hin dewletên Asya'yê li Krynica Zdrój'a bajarê Polonya'yê hat lidarxistin, nûnerê RHK'yê yê Polonyayê Ziyad Raûf û Wezîrê Plansaziyê yê RHK'yê Dr. Alî Sindî jî beşdar bûn. Di forûma bi axaftina Serokomarê Polonya'yê Andirzej Dua destpêbûyî û de serokên dewletan jî bi pêşkeşiyên xwe tevlî bûn. Di panela bi navê "Çawa Ewropayeke Bihêztir" û "Rojavayîbûn an jî Ronesansa Netewe Dewletê" de Nûnerê RHK'yê yê Polonya'yê Ziyad Raûf got ku Iraq û Sûrî yên ku di rewşên Yekemîn û Duyemîn Şerên Cîhanê de ji aliyê Rojava'yê ve hatibûn dameziran-din ber rûxandinê ne, ev boçûna xerab ne bi van dewletan ve sînordar e û netewedewletên din ên Rojhilata Navîn jî di qononaxa rûxandinê ne. Her wiha Raûf destnîşan kir ku Kurdan, bi şerta pergaleke federal piştgirî daye pêşnûmaya jinûveavakirina Iraq'ê a 2003'an û bi vî awayî hevgirtina axa Iraq'ê pejirandine. Raûf bale kişand ku bi vê fehmberiyê Kurdan bi alîkariyên mezin bo aboriya Iraq'ê rola parastina curbicuriya gelan a Iraq'ê lîstiye lê rêveberiya Bexda'yê divêtînên Destûrnameya Federal bi cih neanîne û di hişmendiya navendî de îsrar kirin û pirsgirêkên îroyîn derketin holê û mezin bûn, ji ber vê jî divê ji bo serxwebûna Kurdistanê referandûm bê çêkirin. Raûf destnîşan kir ku di nav van şert û mercan de rêya herî rast pêkanîna refarandûma serxwebûna kurdan e, jixwe kurdan ev pêvajo daye destpêkirin û daxwaza kurda ev e ku ev pêvajo di çerçoveya zagonan û bi axaftinê bê meşandin.

**Wê Ewropa bi gaza Kurdistanê germ bibe**

Projeya veguhastina gaza xwezayî ya Kurdistanê bo Ewropa'yê ku wê dawî li alûdetiya bi Rûsya'yê ku di meseleya Ukrayna û Kirim'ê de bi naçarî serî li Rûsya'yê ditewandin bîne destpê kir. Piştî Xeta Lûleya Neftê ya Kerkûk-Yumurtalik'ê, pêşbînî ev e ku bi xeta nû ya neft û gaza xwezayî ya di sala 2017'an de wê bi dawî bibe gaza xwezayî ya ji Kurditanê dê were derxistin veguhezînin Ewropa'ye. Tê xuyanîkirin ku dewletên YE'yê ku ji % 30'ê pêdiviya xwe ya gaza xwezayî bi ser Ukrayna'yê ji Rûsya'yê peyda dikin, bi gaza xwezayî ya ji Kurditana xwediyê 200 trîlyon metrekup rezerva gaza xwezayî dê bê veguhastin û piştî temamkirina vê xetê dikare ji % 30'ê pêdiviya xwe ji Kurdistanê peyda bike û RHK jî dikare dest bi firotina gaza xwezayî bike. Tê gotin ku heke xeta nû ya lûleyê ya ku di serdana li Enqere'yê ya Wezîrê Aboriyê yê RHK'yê de hatibû gotûbêjkirin di sala 2017'an de biqede RHK'yê ji aliyê aboriyê ve bikeve firehî û rehetiyê. Endamê Komîsyona Enerjî û Pîşesaziyê ya Parlamentoya Herêma Kurdistanê Şêrko Cewdet got ku heke pêşnûma beyî astengî û derengîketinê bê meşandin hem pirsgireka budçeyî ya RHK'yê dê çareser bike digel vê jî pêşketineke mezin a a aborî jî dê çêbibe. Endamê Komîsyona Çavkaniyên Xwezayî ya Parlamentoya Herêma Kurdistanê Dilşad Şaban jî anî ziman ku çavên dewletên Ewropayê li ser gaza xwezayî ya Kurdistanê ye û heke ev pêşnûma dê pêk were dewleyên YE'yê fersenda jiholêrakirina bendewariya Rûsyayê dê bi dest bixin.

**Operasyonên Pêşmerge didomin**

Li aliyekî operasyonên Pêşmergeyê yên ku 3 hefte berê dest pê kiribûn, li herêmên Kerkûk û nexasim Dakûkê berdewam dikin. Hat ragihandin ku li Dakûkê 45 DAIŞ'î hatin zeftkirin. Di encama operasyonên ku 3 Pêşmerge jiyana xwe ji dest dabûn, Serokê Partiya Sosyalîzma Demokratîk (PSDK) Hama Hecî Mehmûd jî tê de 23 Pêşmerge birîndar bûbûn û bi dehan endamên DAIŞ'ê jî hatibûn kuştin de 12 gundên girêdayî Xûrmatû û Dakûkê hatibûn paqijkirin. Berdevkê Asayîşa Kerkûkê Emid Simko derbareyê operasyonan de pirsên BasNûçeyê bersivandin û got ku 45 endamên DAIŞ'ê ku di nav gundiyên ku vedigeriyan malên xwe ên li gundên xilaskirî de xwe veşêrin û rêçên xwe bidin windakirin, bi xebatên baldarî yên yekeyên aşayîşa Kerkûkê hatin zeftkirin. Mehmûd ragihand ku piştî lêpirsînan hat zanîn nû ku endamên zeftkirî yên DAIŞ'ê bi armanca pêkanîna çalakiyên terorî ên li navenda Kerkûkê û navçeyên wê tevlî nava gel bûne.

Hat ragihandin ku li Herêma Şengalê, di êrîşa bi topa hawanê ya DAIŞ'î li hemberî Pêşmergeyan de 4 pêşmerge jiyana xwe ji dest dane. hat ragihandin ku piştî vê êrîşê di bombebarana balafirên Hevpeymanê ya li eniyên DAIŞ'ê de 8 DAIŞ'î hatine kuştin.

Li aliyekî din Serokê eşîra Berwarî ya li Duhok û derûdorên wê Fazil Berwarî nêzîkahiya eşîrên Sunnî a bi DAIŞ'ê re nirxand û angaşt kir ku eşîrên Sunnî ereb ên ku berê ji alî DAIŞ'ê dikirin hêdî hêdî ber bi eniya dijberî DAIŞ'ê ve tên û dawîlêhatina DAIŞ'ê jî bi guherîna helwestên alîgiriya van eşîran pêk bê. Berwarî anî ziman ku van eşîrên ku pê hesiyan ku DAIŞ çi qas rêxistineke bi xetereyî ye, roj bi roj rika xwe didin DAIŞ'ê. Her wiha Berwarî anî ziman ku ji ber ku DAIŞ digel êzdî û xirîstiyanan, erebên sunnî jî dikujin û mizgeftan û hemû cihên pîroz dirûxînin û dişewitînin ev eşîr ji DAIŞ'ê dûr ketine. Berwarî got ku DAIŞ dijminê hemû mirovahiyê ye û bi taybetî dixwaze kurdan tune bike lê kurd dikarin xwe biparêzin, lewre ji dîrokê û vir de kurd, rastî êrîşên bi vî rengî bûne û êdî bûne xwediyê ezmûneyekê.

## "Divê çek rasterast bigihîjin Pêşmerge"

Rawêjkarê Asayîşa Giştî yê RHK'ê Mesrûr Barzanî hefteya çûyî li Hewlêrê çend hevdîtinên dîplomatîk pêk anîn. Di hevdîtina Serbalyozê Avûstralya yê li Iraqê Crestofer Langman û lijneya pê re de bang li raya navneteweyî kir ku alîkariya ji Pêşmerge re zêdetir berdewam bikin. Barzanî diyar kir ku Pêşmergeyên di mercên herî dijwar de jî pişta DAIŞ'ê şkandine, ger alîkariyeke baş bistînin wê karibin DAIŞ'ê ji holê rakin. Di vê hevdîtina ku geşedanên dawî yên herêmê hatin nîqaşkirin de Mesrur Barzanî, ji bo piştgirîdayîna Pêşmerge spasiyên xwe pêşkêşî gel û hikûmeta Avûstralya kir û anî ziman ku ew hêvî dikin ku Avûstralya rasterast alîkariya çekdarî li Hêzên Pêşmerge bike. Barzanî amaje bi pêwîstiya têkşkandina DAIŞ'ê ya li hemû Iraqê kir û got: "Divê li Iraqê bi hêzeke neteweyî ya xurtkirî ev yek pêk bê." Li ser navê lijneyê Serbalyozê Avûstralya yê li Iraqê Crestofer Langman jî da zanîn ku ew ê alîkariya Avûstralya ya ji bo Hêzên Pêşmerge yên ku li dij DAIŞ'ê şerekî serketî dimeşînin dom bike.



# Yasaya HAN a Parlamena Iraqê û helwesta kurd

Li Parlamena Iraqê, Yasaya Gardên Mahallî ango Hêzên Asayîşa Niştimanî (HAN) piştî çend taloqkirinan, dîsa hate rojeva parlemanê. Yasaya HAN ya ku di destpêkê de ji alî partî û fraksiyonên Şîa ve dihate pejirandin ji ber ku naveroka wê ne li gor wan pêk hat, yasa bû cihê gefxwarina aliyên şîa. Ev yasaya ku hem ji alî DYA û Îngilîstan ku bi ser balyozên xwe yên Bexdayê ragihandin, ji hêla aliyên sunne û her wiha Serokwezîr Haydar Îbadî ve tê piştgirîkirin. Di vê babetê de sekna her aliyan diyar e, lê belê ya ne diyar sekna kurdan e. Ji bo di derbarê vê yasayê de em helwesta kurdan têbigihîjin û bizanibin gelo ev yasa ji bo kurdan tê çi wateyê, ziyan an jî sûda vê yasayê li kurdan dibe yan ev yasa ji bo kurdan xaleke nêtar e, me bi Parlamantê Lîsta Kurd ê Parlamena Iraqê Rênas Cano re dîdariyek kir.

**Şîa û li ser HAN'ê ne biryardar in**

Ev demek e, li Parlamena Iraqê li ser yasaya HAN'ê nîqaşên rikber têne kirin. Ev yasaya ku piştî ketina Mûsilê û her wiha bêkêriya Artêşa Iraqê ya li parêzgeh û bajarên Iraqê ketibû rojevê, ji alî şîayan ve wek xeta sor tê nîşankirin û aliyên şîa vê yasayê wek yasaya perçebûna Iraqê radigihînin. Ev yasaya ku niha li Parlamena Iraqê ji bo pesendkirinê daniştina wê tê kirin, li her herêmên Iraqê sazkirina yekîneyên asayîşê yên herêmî ku wek Hêzên Niştimanî têne binavkirin ferz dike. Ev hêz wê asayîşa bajaran pêkan bikin û wê pêwendiya navbera herêman û Artêşa Iraqê saz bike. Wê artêşa Iraqê destê xwe ji dabînkirina asayîşa Parêzgeh û bajaran vekêşe û wê tenê ji bo şerên mezin bê rêkûpêkkirin. Di rewşên awarte ên wek ji alî hêzeke din ya derve dagirtina parêzgeh û bajaran de wê artêş aw herêman rizgar bike, lê piştî rizgarkirinê wê asayîşa parêzgeh û bajaran dîsa radestî van hêzan bike. Parlamennê Lîsta Kurd a Parlamena Iraqê Rênas Cano diyar kir ku beriya niha jî çend caran yasaya HAN'ê di parlamena Iraqê de hatiye rojevê, lê ji ber ku partiyan li ser kêkeftinekê li hev nekirine hatiye taloqkirin, vê carê jî partiyên şîa li dij vê yasayê derdikevin û yasayê wek xala perçebûna Iraqê didin nasîn. Cano got: "Aliyên şîa beriya niha bi xweşbînî nêzîkî vê yasayê dibûn, lê ji ber ku di naveroka wê de hin guherîn hatin kirin îro ew aliyên şîa vê yasayê wek xeta xwe ya sor destnîşan dikin"



**Kurd dixwazin Pêşmerge kontrola 'Herêmên bi nakok' bikin**

Di derbarê helwesta kurdan a li ser vê yasayê jî Rênas Cano da zanîn ku ji bo kurdan çend xalên grîng ên vê yasayê hene û van xalan wiha anî ziman: "Yek jê ev e; Herêmên ku di navbera Bexda û Hewlêrê de li ser rêveberiya wan biryarek hevbeş nehatiye stendin, ango 'Herêmên bi nakok' ku di maddeya 140 a destûra Iraqê de rêya çareseriya wan hatiye destnîşankirin bikevin bin kontrola Hêzên Pêşmerge. Ya duyem; Daxwaza me ew e ku mafê hemû pêkhateyên Iraqê çi be, li gor ew mafê xwe di nav HAN'ê de cih bigirin. Ya sêyem jî ev e; Gelo ev hêz wê di bin desthilata Waliyên parêzgehan de bin yan di bin desthilata Serokwezîr yan Wezîrê Navxwe de bin? Ev jî di xwe de aloziyekê peyda dike, çimku sunne û kurd daxwaz dikin ku ev hêz di bin desthilata parêzgeh an jî civata parêzgehan de bin. Her wiha li ser rola van hêzan jî nîqaş têne kirin. Li gor yasayê karê azadkirina parêzgeh an jî herêkan karê Artêşa Iraqê ye lê karê paraztina parêzgehan karê HAN'an e. Her wiha tê gotin ku HAN' ji bo rizgarkirina hin parêzgehên din ger ku bixwazin wê dikaribin biçin û beşdarî şerê rizgarkirina parêzgehên din jî bibin. Ev tê wê wateyê; wê hêzên ji Samara, Besra, Kerkûk û Hewlêrê ji bo rizgarkirina Anbarê alîkariya Anbarê bikin, lê piştî rizgarkirinê hêzên Anbarê asayîşa xwe pêk bînin" Rênas Cano her wiha da zanîn ku bêtirî hêzên navxweyî û DYA û Îngilîstan jî hewl didin ku ev yasa bi vî awayî bê pesendkirin, lewre tê go ku bi vî awayî wê Artêşa Iraqê yekdest bibe û wê dikaribe xwe ji bin bandora milîşeyên wek Heşdî Şabî rizgar bike.

**Aliyên şia xwestin vê yasayê ji bo xurtkirina Heşdi Şabi bikar bînin**

Parlamentê Lîsta Kurd ya Parlamena Iraqê Rênas Cano, di derbarê guherîna helwesta aliyên şîa de jî anî ziman ku, di destpêkê de wan xwestiye bi ser vê yasayê re zemîneke yasayî pêkan bikin da ku milîşeyên şîa yên wek Heşdî Şabî xurtir bikin, lê belê piştî guherîna naveroka vê yasayê, aliyên şîa li dij vê yasayê derketine û yasayê wek xala perçebûna Iraqê dane destnîşankirin. Cano got: "Lê belê li Iraqê gellek pêkhateyên din hene. Sunneyên ku ji Bexdayê xeyidîne hene û ji ber vê yekê aliyên navxweyî yên derî şiayan û hêzên mezin ên derve jî nexwestin ku ev yasa li gor şiayan pêk bê. Ji ber vê yekê niha şîa li dij vê yasayê derdikevin û dibêjin; Di vê yasayê de daxwazên me tune ne" Li ser pirsa me ya di derbarê angaşta Koma Bedr ya Şîa ku dibêjin ev yasa di siberojê de pêşî li perçebûna Iraqê vedike jî Cano got: "Rast e, şîa dibêjin ev yasa ji bo mercên îroyîn yên şer dibe ku sûdwer be, lê ji bo siberojê dikare Iraqê perçe bike. Lê belê ger ku îro Iraq neyê parastin wê perçebûna wê nemîne siberojê û wê îro perçe bibe.

**Ev yasa bandor li kurdan nake**

Di derbarê pesendkirin û egeriya bandora erênî yan neyênî ya li ser kurdan a vê yasayê de jî Rênas Cano da amaje pê kir ku Hêzên Pêşmerge wek hêmaneke parastinê ya Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) di destûra Iraqê de wek hêzeke yasayî ya Iraqê cih digire. Ji ber vê yekê her çiqas di hin xalên ve yasayê de têkilî bi hêzên Pêşmerge hebe jî ev yasaya HAN'ê nikare bandoreke neyênî li ser RHK'ê bike. Cano got: "Yasaya ku erk û rola Hêzên Pêşmergeyên RHK'ê destnîşan dike derî vê yasayê ye û ew yasa di cihê xwe de ye û nayê guhertin. Lê belê nîqaşên li ser yasaya HAN'ê parlamen û siyaseta Iraqe asê kiri ye û nahele ku reyek çareseriyê bê peydakirin"

**Leşkeriya ferz hate betalkirin**

Rênas Cano di dawiya axaftina xwe de pergala leşkerî ya kevn a Iraqê û pergala nû pergî hev kir û da zanîn ku di dema rejîma baasê de pergala leşkerî leşkeriyê li ser hemû mêrên ku 18 salên xwe tije dikirin ferz dikir, lê belê piştî hilweşîna rejîmê ya sala 2003'yan hemû ew pêkanînên şoreşa baasê hatin terikandin û pergaleke din ya leşkerî ya leşkeriya pereyî ango leşkeriya mûçeyî hatiye pejirandin. Cano got: "Niha dîsa hin kes derdikevin bi ser lawaziya Artêşa Iraqê ve pergala pereyî rexne dikin û dibêjin bila leşkerî ji nû ve bibe erkeke ferz. Her wiha li Herêma Kurdistanê jî çend caran pêşniyaz hatin kirin ku xizmeta leşkeriya welat bibe erkekî ferz. Hem li Herêma Kurdistanê û hem jî li Iraqê di derbarê vê babetê de nêrînên ji hev cuda hene û gellek caran ev nêrîn derdikevin pêşberî raya giştî. Le belê bi raya min ev tişt ji pêkanînê dûr e. Şert û merc rê nadin ku leşkerî ji nû ve bê ferzkirin. Ev dûrî rastiya civakî û siyasî ya niha ye"





# “Kurdistan stargeha kêmnetew û olên cuda ye”

Mihemmed Salim

Piştî şoreş û raperîna salên 90'î li Başûrê Kurdistanê proseya demokrasiyê dest pê kir. Kurdên Başûr ku bi salan li hember Rejima Beasê şer dikirin ew rejim ji nav birin û weke otorîteyeke siyasî dest bi rêvebirina Kurdistanê kirin. Rêveberiya kurdan a li Başûr di sala 1992'an de dest pê kir di heman salê de di Destûra Bingehîn de mafê ol, ayîn û kemîneyên cuda hatin parastin. Di nava çend salan de nûnerên hemû ol û pêkhatayen di meclîsê de cihê xwe girtin. Li gel vê yekê kemîneyên li Başûrê Kurdistanê jî di parlamentoyê de hatin temsîlkirin û mafê wan ê çandî û dîrokî hat parastin. Her wiha di vê çerçoveyê de her kemîneya li Kurdistanê dikare bi zimanê xwe weşanan bike û perwerdeyê bibine. Li Hewlêrê di 62 dibistanan de zarokên aşûrî û ermenî bi zimanê zikmakî perwerdeyê dibînin. Her wiha hemwelatiyên tirkmen di dibistanên xwe de bi tirkî perwerdeyê dibînin. Pêkhateyên cuda weşanan ava dikin û azadiya derbirîne peyda dikin. Her wiha di sala 2005'an televizyona sûryaniyan a bi navê Ishtar hat avakirin û gelek rojnmae û kovarên pêkhateyên cûda tên belav kirin.

Herêma Kurdistanê ya ku her tim ji pêkhate û kemineyên cuda yên olî re bûye hêlîn bi êrişên DAIŞ'ê yên ser herêmê jî re bû stargeha wan. Cemiyet û bawermendên ayînên cuda li Herêma Kurdistanê kom bûn û ji hêla Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) ve hatin parastin û li kampan hatin bicihkirin. Di gel şerê dijwar ê DAIŞ'ê û qeyrana aborî Hikûmeta Herêma Kurdistanê li penaberan xwedî derdikeve û zêdetir ji 2 milyonan penaber li Başûrê Kurdistanê têne hewandin. Di gel wê yekê proseya serbixwebûna Kurdistanê jî berdewam dike û di kurtedemekê de pêkhatina demokrasiyê ya li Başûrê Kurdistanê bû hokara wê yekê jî ku Herêma Kurdsitanê li Rojhilata Navîn weke stêrkekê geş bê destnîşan kirin.

Li gel çanda demokrasiyê û mafê pêkvejiyanê, şerê Pêşmergeyên Herêma Kurdistanê yê li hember DAIŞ'ê proseya serbixwebûna Kurdistanê jî di rojeva cihanê de ye. Hemû welatên Ewropa'yê eşkere dikin ku ewê di şerê li hember DAIŞ'ê de di alikariya Başûrê Kurdistanê de berdewam bin û eger di siberojê de Herêma Kurdistanê serxwebûnê ragihîne jî ewê piştevaniya wê bikin. Li gel van rûdan û geşedanan Herêma Kurdistanê bi awayekî erênî jî di medyaya cihanê de cih digre û dezgehên mezin ên dinyayê hemû li Başûrê Kurdistanê bi cihbûne. Akademîsyen û Berpirsê Peywendiyên Dervê yê Kurdistan TV'yê Dr. Îbrahîm Hecî Salih û nivîskar û Mudîrê Giştî yê Zagros TV'yê Aza Hesîp Qeredaxî li ser proseya serbixwbûna Kurdistanê, eleqeya medyayî û dîplomatîk a li ser Kurdistanê agahî dan BasNûçe'yê. Herdû karnasan dan zanîn ku Hewlêr bûye navendeke giring a Rojhilata Navîn.





**Li Hewlêrê di 62 dibistanan de zarokên aşûrî û ermenî bi zimanê zikmakî perwerdeyê dibînin. Her wiha hemwelatiyên tirkmen di dibistanên xwe de bi tirkî perwerdeyê dibînin. Pêkhateyên cuda weşanan ava dikin û azadiya derbirîne peyda dikin.**

## Hewlêr navenda dîplomasiyê ye

Serokê Beşa Ragihandinê yê Zankoya Hewlêrê û Berpirsê Peywendiyên Dervê yê Kurdistan Tvyê Dr. Îbrahîm Hecî Salih li ser proseya serbixwebûna Kurdistanê, dîplomasiya Kurdistanê ya bi welatên Ewrûp re rawestiya û ji Basnûçeyê re axivî. Dr. Îbrahîm Hecî Salih eşkere kir ku ji zêdetir ji 25 welatan nûnertî li Hewlêrê vekirine û ew Hewlêrê weke navendeke giring a Rojhilata Navîn dihesibînin. Her wiha Dr. Îbrahîm Hecî Salih amaje bi wê yekê jî kir ku Kurdistan defakto serbixwe ye û dîplomasiya cihanê Hewlêrê serbixwe dihesibîne. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Dr. Îbrahîm Hecî Salih ragihand ku hemû sazî û dezgehên mezin ê cihanê niha li Kurdistanê ne û ew romalkariya geşedanên Kurdistanê dikin. Dr. Îbrahîm Hecî Salih li ser vebûna nûneriya Yekîtiya Ewrûpa ya li Hewlêrê jî rawestiya û wiha berdewam kir: “Hûn jî dizanin Kurdistan weke defakto dewletek e. Hemû tiştê xwe heye. Hemû dezgeh û saziyên xwe hene. Welatên daîmî yên Neteweyên Yekgirtû, DYA, Almanya, Çîn, Fransa, û yên din li Hewlerê konsolgerî ava kirine. Welatên ereban, her wiha dewletên Ewrûpa alaqayeke mezin nişanî geşedanên Kurdistanê didin. Herî dawî weke ku hûn jî dizanin Yekîtîya Ewrûpa jî li Hewlerê nûnertî danî.”

## “Kurdistan weke welatekî pêşketî tê nişandan”

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Dr. Îbrahîm Hecî Salih bal kişand ser wê yekê ku Herêmma Kurdistanê di qonaxên gelekî dijwar re derbasbûye û welatên ku navê “Herêma Kurdistanê” qebûl nedikirin niha li Herêma Kurdistanê nûnertî vekirine û bi Herêma Kurdistanê re di nava dîplomasiyê de nin. Her wiha Dr. Îbrahîm Hecî Salih li ser azadiya Herêma Kurdistanê rawestiya û wiha berdewam kir:" Em bi demê re gihan vê qonaxê di salê me Kurdistan Tv damezirandibû welatên ereb digotin bi “Bi navê Herêma Kurdistanê tu dever tuneye” îro ew qonaxa hatiye ku hemû welat Herêma Kurdistanê nas dikin. Kurdistan di hemû medya cihanî de weke welatekî pêşketî tê dest nişan kir. Azadiya derbirînê, çanda demokrasiyê, çanda toleransê, azadiya ayînî ji hêla raya giştî ya cihanê ve tê dîtin.”

## “Pêşmerge di medya cihanê de ye”

Nivîskar û Mudîrê Giştî Zagros Tvyê Aza Hesîp Qeredaxî jî bal kişand ser proseya serbîxwebûna Kurdistanê û da zanîn ku proseya serbixwebûna Kurdistanê bi serperiştiya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî vê tê birêvebirin û hemû welatên cihanê piştgiriya Mesûd Barzanî dikin. Her wiha Aza Hesîp Qeredaxî bal kişand ser şerê bi DAIŞ'ê jî re û da zanîn ku piştevaniya hêzên Ewrûpa bi dîplomasiya Mesûd Barzanî pêk hatiye. Di berdewamiya axaftina xwe de Aza Hesîp Qeredaxî li ser rûdanên qeyrana Serokatiya Herêma Kurdistanê jî rawestiya û eşkere kir ku çavê hemû cihanê li ser Kurdistanê ye û hemû cihan piştevaniya Kurdistanê dike lê belê hin partiyên siyasî yên Kurdistanê ji diyalogê direvin û ji bo berjewendiyên hizbî tevdigerin. Aza Hesîp Qeredaxî li ser eleqeya medya cihanê ya ji bo Kurdistanê jî rawestiya û wiha axivî: “Gelek serokwezîr û wezîrên derve yên welatan serdana Kurdistanê kir. Hemû dibêjin qehremaniya Pêşmergeyan bilind dinirxînin. Di medyaya cihanê de Kurdistan weke welatekî parêzera mirovahiyê tê destnîşan kirin. Dezgehên mezin ê medyayî li ser egîdiya Pêşmergeyan raportan belav dikin.”



Selam Abdullah:

# Divê medya beşdarî pros

**Rojnameya Xebat a ku 56 sal e li Hewlêrê weke organa PDK'ê derdiçe û demeke dirêj e jî li ser înternetê wêşana xwe didomîne, yek ji tomargeh û dezgehên ragihandiniyê yên herî demdirêj e li Kurdistanê. Sernûserê Xebatê Sellam Abdullah hem rabirdûya rojnameyê û berpirsiyariya wê ya di rêya îroyîn de û hem jî bandora medyayê ya di meşa serxwebûnê de bo BasNûçe'yê nirxand. Abdullah diyarkir ku di dema şerê DAIŞ'ê de medyayê hin xeletî kirine û bûye sedema xetereyan û bal kişand ser bandora wê ya di rêya serxwebûnê de.**

**Siwar Bedirxan**

Rojnameya bi navê Xebat a ku ev 56 sal e li Hewlêrê wek organa Partiya Demokrata Kurdistanê belav bûye û demeke dirêj e li ser malpera xwe dest bi weşana kurdiya latînî kiriye bi awayekî profesyonel karê xwe didomîne. Her wiha rojnameyê ragihandina xwe wek 04.04.1959 diyar kiriye û Xebat yekem jimareya xwe bi eşkere derxistiye û di destpêkê de bi erebî belav bûye. Xebatê hin caran ji ber rewşa siyasî weşana xwe rawestandiye û navber jî daye weşana xwe. Mirov dikare bêje ku jiyana Xebatê jî weke ya şoreşa Başûrê Kurdistanê ye û piştî şoreşê gihiştiye qonaxeke herî berz.

Dema em li dîroka Xebatê dinerin piştî raperîna 1991'an Xebat bi awayekî berdewamî derdikeve. Niha Xebat 16 rûpele û rojname bi nîv rengînî û bi qebareya mezin li Hewlêrê derdikeve û li hemû bajarên Başûrê Kurdistanê belav dibe. Organa Partiya Demokrata Kurdistanê rojnameya Xebat di karê xwe de girîngiyê dide nûçe, hevpeyvîn, rûdanên Kurdistanê, derdor û cîhanê. Rojnamaya Xebat bi çendîn beşên nûçe, rûdaw, siyaset, hevpeyvîn, çand, computer, agahdarkirin û ji werzîş pêkhatiye û li gel beşên taybet jî weşana xwe didomîne. Her wiha rojnameya Xebat yek ji wan rojnameyên Kurdistaniye ku bêrawestan bi berdewamî derketiye û her wiha bi hukmî temenê rojnamevaniya xwe û ji bo pêgihandina rojnamevanan bûye weke xwendingehekê. Her wiha li karkirinê, rêbaza netewî û niştimanî daniye ber xwe. Rojnameya Xebat bi malpera xwe (xebat.net) bi awayekî online jî nûçeyan belav dike. Sernûserê Rojnameya Xebat Sellam Abdullah ji BasNûçe'yê re axivî û li ser derçûn û karê rojnameya Xebatê, rola medya kurdî ya di şerê li hember DAIŞ'ê de rawestiya. Abdullah aşkere kir ku Kurdistan di qonaxa serxwebûnê deye û eger medya beşdarî wê proseyê bibe dê piştevaniya welatan zêde bibe û ewê raya giştî ya cihanê piştgiriya kurdan bikin.



**Ji kerema xwe hun dikarin ji me re qala paşxana rojnameya Xebatê bikin, Xebatê çawa dest pê kir? Kengê dest pê kir? Di kîjan qonaxan re derbas bû?**

Xebat li Başûrê Kurdistanê rojnameya herî qedîm e. Di 4'ê meha Nîsana 1959'an de dest bi weşanê dike. Bi erebî belav dibe. Weke heftename der diçe. Her wiha rojnameya Xebat bi ser Partiya Demokrata Kurdistanê bû. Piştî raperînên salên 91-92 rojname êdî bû rojane û zimanê wê jî bû kurdî. Niha zêdetir ji 6 hezar kesî tiraja me heye. Weke ku min got rojname bi ser PDK'yê raport, nûçeyên wê jî di wê çarçoveyê de nin. Her wiha rojname xwe digihîne hemû kesî li Başûrê Kurdistannê. Hemû kes dikarin ji me re raport û analîzan rêbikin lê belê divê ew jî li gor polîtîkaya me ya weşanê be. Eger nivîs û babetên ku ji me re tên em wan belav dikin. Xebat dezgeheke qedîm û sekfetî ye. Ji rojnamegeran re bûye weke xwendingehekê. Karê gelekî baş kirine. Bê rawestan belav dibe. Rojnameyê tradîsyonek ava kiriye. Rojnameya herî temendirêj a Başûrê Kurdistanê ye.

**Ji salekê zêdetir e, Kurdistan li hember DAIŞ'ê di şer de ye. Ev şer di medyaya Kurdistanê de çawa cih digre?**

Em agahiyên ku ji sengerên belav dikin. DAIŞ zulme li gele me û li hemû pêkhateyên Iraqê dike. Em wê hoviya DAIŞ'ê eşkere dikin û radigihînin. Li ser meseleya şer û pevçûnan em raportan jî belav dikin. Nûserên me raportan belav dikin. Divê em wê rewşê belav bikin û ji xelkê re eşkere bikin. Lê belê nabe em destkeftiyên neteweyî ji dest bidin. Weke ku min got. Divê em destkeftiyên xwe yên neteweyî biparêzin. Nabe ku hemû tiştî jî belav bibe. Hin tişt xetereyê durist dikin. Wezareta Pêşmerge li ser vê yekê daxuyanî belav kir. Beriya hemû tiştî hewceye hemû kes berjewendiyên neteweyî bifikire eger ne wisa be dezanformasyon pêk te. Dijayetiya neteweyî dest pê dike.

**Kurdistan di pêngava serxwebûnê de bû. Beriya amadekariyên referandûmê DAIŞ'ê êrîş kir û qeyrana mûçeyê rû da û her wiha niha jî qeyrana serokatiyê heye. Medya çiqasî di nava van meseleyan de cih digre?**

Weke rojnameya Xebat û weke rojnamegeran, divê em hokarên wan qeyranan serçaviyên wan qeyranan bibinin. Em dipirsin mesela "Gelo Hikûmeta Herêma Kurdistanê qeyranan durist dike?" yan jî "Gelo Hikûmeta Bexdayê qeyranan durist dike?", "Gelo welatên dorûber van qeyranana durist dikin?" em li bersiva van pirsan digerin. Nimûneyekê bidim Qeyrana mûçeyê Bexdayê durist kiriye. Bexda beyî tu hincet mûçeya me naşîne. Me mejbûr dihêle ku em rojane 550 hezar bermîl neft radestî Bexdayê bikin. Her çend em pabendî wê rêkeftina nefte bin jî Iraq nefte naşîne. Em jî di raportan de belav dikin û didin zanîn ku sedema qeyrana aborî Hikûmeta Bexdayê ye. Eger ez bêm ser meseleya şerê DAIŞ'ê jî me şerê DAIŞ'ê nekiriye. DAIŞ'ê êrîşî ser me kir. DAIŞ'ê êrîş anî ser me. Em di nava sînorên xwe de bûn. DAIŞ'ê girt ser me. Rast e di destpêkê de DAIŞ serkeftî bû lê belê xoşbextane Pêşmergeyên kurd ew ji Kurdistanê der kirin. Niha jî li hember wan sekinîne û şerê wan dikin. Di hemû sengeran de serkeftinên Pêşmergeyên tên eşkere kirin. Pêşmerge serkeftî ne û sengerên wan bi hêz in. Her wiha nabe em dîmenên Pêşmergeyên şehîd belav bikin. Ew ne duriste, divê em xwe ji wan xeletiyan dûr bixin. Em nabêjin bila xelkê Kurdistanê ji şer haydar nebe û zanyariyan wernegre. Em dibêjin divê tirs xofa wan dirindeyan jî nekeve dile gelê me. Pêşmergeyên me ew têk birin. Dijminên ku DAIŞ bi ser me de şandin negihiştin armanca xwe. Ew kesên ku ji destkeftiyên kurdan aciz bûn û dijayetiya kurdan dikin ew ê negihêjin armancên xwe.

**"Medya dikare daxwazên me bi welatên bi cihanê bide nasandin da ku em jî karibin nûnertiyan vekin û ala me jî berz bibe li dezgehên navdewletî. Medya dikare vê yekê hem ji gelê me jî re hem jî ji milletê cihanê re eşkere bike. Ji bo vê yekê hewceye kar bê kirin."**

**Gelo şerê bi DAIŞ'ê re ezmûnek bi medyaya Kurdistanê re çê kir? Mesûd Barzanî di Roja Rojnamegeriya Kurdî de eşkere kir ku şerê medyayî jî li Kurdistanê li dar e û divê rojnameger xwe ji vê yekê biparêz in. Di qonaxa şer de medya çawa dikare bi erka xwe rabe?**

Di her 22'yê Nîsanê de gotara serok belav dibe. Ew roj Roja Rojnamegeriya Kurdî ye. Îsal yadgirtina 117'mîn bi rêveçû. Cenabê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî dixwaze medya jî divê qonaxê de bi erka xwe rabe. Beşdariyê li daxwaza gele kurd bike û rastiyan ji wan re eşkere bike. Eger ne wisa be mumkune ku destkeftiyên me ji

# seya serxwebûnê bibe

nav herin. Divê em wê yekê biparêzin. Cenabê Serokê Herêma Kurdistanê xwest bale bikşîne ser wê meseleye. Di destpêka şer de gelek dezgehan şaşîtî dikir. Gelekî bi pele bûn. Divê ew nehata kirin. Ji ber hin şaşîtî û çewtiyan hin alozî derketin. Tirsa DAIŞ'ê bi xelkê re çêbû. Ew şaşîtiyên hin dezgehan bûn.

Medya dikare hêzê bide gele me û bi gel re be. Medya dikare beşdarî proseye serkeftinê bike. Medya dikare zanyariyên rast û durist bigihîne bi xelkê. Medya dikare plan û bernameyên dijmin eşkere bike. Em wisa dizanin. Di destpêka şer de hin xeletî hebûn di warê medyayê de lê belê ew hatin çareserkirin û tu muşkile nemaye. Dema ku em zanyariyan distînin em li ser wan difikirin. Mesele çi Wezareta Pêşmerge be, çi Wezareta Karênavxweyî û çi jî zanyariyên Hêzên Asayîşê bin em li ser hemûyan kar dikin. Tiştekî ku dijî berjewendiya neteweyî be em belav nakin. Di vê serdemê de medya gelekî giring e. Hemû kes xwe bi rihetî digihîne ser her babetê. Weke rojnameger hewceye em rastiya ji xelkê xwe re bejin lê belê nabe em bi awayekî propaganda dijmin jî bikin. Me gelek qonaxên dijwar derbas kirine, em ê vê qonaxê jî derbas bikin û ew ê gelê me ji vê zûlma van dirindeyaan rizgar bibe. Civaka me baweriya xwe Pêşmergeyan tîne Pêşmerge serkeftinên mezin tomar dikin. Em jî kêfxweşin dema em wan serkeftinan ji civakê re ji komelgehê re eşkere dikin.

**Çavê dîplomasiya hemû cihanê li Kurdistanê ye. Kurdistan jî di proseya serxwebûnê de ye. Li ser serxwebûnê medyaya Kurdistanê tu bername danîne? Medya çawa beşdarî vê proseyê bûye?**

Ev çend sal e em têdikoşin û em xweragiriyê dikin hemû ji bo wê dozê ye. Bi hezaran şehîden me hene. Weke gelheya gelek welatan şehîdên me çêbûn. Hîn jî çêdibin hemû doza me armanca me serbixwebûna Kurdistanê ye. Bo çi xebat hatiye kirin? Bo çi Pêşmerge şehîd bûne? Bo çi malwêranî bi ser xelkê me de hatiye? Hemû ji bo weletekî serbixwe ye. Hemû ji bo Kurdistana serbixwe ye. Îro rast e me serbixwebûn ranegihandiye lê belê li jêrzemînê Kurdistan defakto serbixwe ye. Hemû sazî û dezgehên ji bo dewletbûnê hene. Medya dikare div ê qonaxê de piştevaniya Herêma Kurdistanê bike. Di wê proseyê de kiryarên Hikûmeta Herêma Kurdistanê derxe pêş. Nûnertiyên hemû welatan li Hewlêrê henin. Eger medya karekî serkeftî bike ew ê piştevaniya welatan a ji bo Herêma Kurdistanê jî zêde bibe. Medya dikare bîra neteweyî di nava xelkê de xurt bike. Ew giring e.

**Em werin ser warê navnetewî. Di warê navdewletî de medyaya Kurdistanê dikare çawa beşdarî vê proseyê bibe?**

Beriya hemû tiştî divê em wê zemînê saz bikin ku kurd jî xwedî maf in. Mafê kurdan jî heye ala wan li gel alên welatên din bilind bibe. Em naçin êrîşî tu kesî nakin. Em li ser axa xwe dijîn. Bi hezaran sal derbasbûn ev ax axa me ye. Divê em wê yekê eşkere bikin ku ew qas milyon xelk li ser vê xakê dijîn çima dewleteke wî xelkî nebe. Weke ku min got me êrîşî tu kesî nekiriye. Bi hezaran sal e em li ser xaka xwe dijîn. Em doza zêr û zeviyan li tu kesî nakin. Bi tenê daxwaza me ew e ku xaka ku kurd li ser dijîn xaka kurda ye û divê ew jî xwedî dewlet bin. Dîroka me diyar e. Ev welat welatê kurda ye. Bav û kalen me li ser vê axê bûn û îro roj jî em li ser vê axê nin. Wan gelek berxwedan daye îro roj em jî wê berxwedanê didin tenê daxwaza me ew e ku em bibin rêvebirê welatê xwe. Ev mafekî rewa ye û ji hêla Neteweyên Yekgirtî jî hatiye pesendkirin. Eger em biryara xwe bidin tu kes nikare li ber biryara me derkeve. Em jî dixwazin di nava aramiyê de li welatê xwe bijîn û biryara çarenûsa xwe bidin.

Medya dikare di vî warî de bi erka xwe rabe. Dikare daxwazên me bi welatên bi cihanê bide nasandin da ku em jî karibin nûnertiyan vekin û ala me jî berz bibe li dezgehên navdewletî. Medya dikare vê yekê hem ji gelê me jî re hem jî ji milletê cihanê re eşkere bike. Ji bo vê yekê hewceye kar bê kirin. Em wê yekê tekez dikin. Başûrê Kurdistanê bûye navendeke dîplomasiyê, demokrasiya li Kurdistanê li Rojhilata Navîn derdikeve pêş. Li ser vê yekê jî hewceye kar bê kirin. Hemû dezgehên medyayî jî li Başûrê Kurdistanê nûnereyatî vekirine. Hewcedarî bi wê yekê jî heye ku dezgehên me jî li paytextên welatan nûnertiyan vekin û raportên li ser kurdan belav bikin. Çawa çavê hemû dîplomasiya cihanê û raya giştî ya cihanê li ser kurdan be divê çavê me jî li ser welatan be. Kurd li her devera cihanê belavbûne pêdawîstî bi wê yekê jî heye ku raport li ser wan kurdan jî bên belav kirin.



**Dezgehên medyaya Herêma Kurdistanê weke BasNews, Rûdaw, Kurdistan24, Kurdsat, Zagros û hwd... nûnertî li Bakurê Kurdistanê jî danîne. Vê yekê kurd çiqasî nêzîkî hevdû kirine? Her wiha ewê tesira vê yekê li medyaya kurdî çi be?**

Ev pêşketinên gelekî baş in ji bo medya kurdî. Mesela beriya bi çend salan dezgeheke me ya bi navê Rûdaw nebû. Rûdaw karekî profesyonel birêve dibe. Ji bilî Rûdawê nûnertiyên tu dezgehan li hemû welatan tünene. Bi şêwezake pêşketî bi teknîkeke pêşketî kar dike. nûçeyan di dema wê de belav dike. Divê em bên ser dezgehên din jî ew jî gelekî pêşketî nin. Pêşketineke baş çêbûye di warê medya kurdî de. Hêvîdarim Kurdistan24 jî bigihê wê astê û ew jî serkeftî be. Li gor çavdêriya min hemû dezgehên medyayî yên Kurdistanê karê xwe baş dikin. Medyaya layanî jî heye, umîdarin ku ew jî serkeftî bin û xizmetê ji bo gelê xwe bikin. Bê gûman xelk nêzîkî hevdû dibe. Hevdû baştir nas dike. Her raporteke li ser parçeyekî agahdariyê dide parçeyekî din ê Kurdistanê. Ev jî gelekî muhîm e ji kurdan. Têkelî di nava kurdan de pêk te. Danûstendin zêde dibe. Kurdan nêzîkî hevdû dike. Hevîdar im ev yek berdewam bike.

**Kurdistan çawa dikare qonaxa 'medyaya hizbî' derbas bike? Gelo ewê medya profesyonel çawa ava bibe?**

Bi demê re ew ê ew medya me jî saz bibe. Mesele Rûdaw televîzyoneke cihanî ye. Renge ku hin kesên bi ser partiyên siyasî nin piştgiriya wê bikin lê belê Rûdaw karê xwe baş dike, neteweyî ye. Babetên gelekî xwe bi awayekî serkeftî belav dike. Bê layan e. Ne bi ser partiyan ve ye. Her wiha ez rojnameya Bas a bi lehçeya soranî jî gelekî diecibînim. Rojname kare xwe baş dike. Her çend heftename be jî gelekî tê xwendin. Nûserên wê yê baş henin. Ev ji bo medya Kurdistanê gelekî giring e. Ez ji we jî re serkeftinê dixwazim karê hûn dikin jî hêja ye.

> "Her raporteke li ser parçeyekî agahdariyê dide parçeyekî din ê Kurdistanê. Ev jî gelekî muhîm e ji kurdan. Têkelî di nava kurdan de pêk te. Danûstendin zêde dibe. Kurdan nêzîkî hevdû dike. Hevîdar im ev yek berdewam bike."



Evindar Tekin

## Ercan Çağlayan:

# Lozan despêka pişavtinê ye



**Bi qasî ku dewletê rê û rêbazên pişavtina çandî û civakî ya li ser kurdan li ser mihengên cûrbecûr lêkirine, nîqaş û nirxên jinavbirina pişavtinê jî li her qadê tên şirovekirin û pêşniyaz li ser hev tên. Akademisyen Ercan Dağ jî li ser meseleyê dide zanîn ku despêka pişavtinê bi awayekî fermî bi peymana Lozanê hatiye bicihkirin û ew polîtîka bi rêya Halkevleri, Halkocakları û saziyên bi heman rengî li her deverên Kurdistanê hatine belavkirin.**

Li Tirkiyeyê li ser geşedana bîrdozî ya neteweperestiyê ku bi taybetî ji bo kurdan bûye sedema bişavtineke xedar a pirali, gellek nîqaş têne kirin. Di nirxandinên aktuel de ev yek bi bayê şoreşa frensî ku beriya neteweyên misliman ên osmaniyan gihîştiye neteweyên mesîhî yên ku pêwendiyên wan bi Ewropayê re xurtin û piştî şkesta osmanî ya Şerê Cîhanê yê 1. di nav tirkan de geşiya ye. Ev geşedana vê bîrdoziya ku piştî vê şkestê di nav ronakbîrên tirk ên ku li Ewropa'yê perwerde dibin de zîl dide, bi İttaat û Terrakiyê xwe bi rêxistin dike, piştî damezirandina Komara Tirkiye'yê dibe bîrdoziya fermî ya vê dewleta nû û dibe fermana bişavtina kurdan. Hinkêrê Beşa Dîrokê ya Zanîngeha Mûşê ya Alparslanê Ercan Çağlayan, bi rîwangeyeke dîrokî vê bîrdoziyê bi polîtîkayên navendperest ên dema Mehmûdê II. ve girê dide û diyar dike ku piştî serhildana Şêx Seîd ev polîtîka bi şêweyekî sosret li ser kurdan vediguhere polîtîkayên hişt ên bişavtinê.

### 'Piştî Serhildana Şêx Seîd bişavt bi sazî dibe'

Hinkêrê Beşa Dîrokê ya Zanîngeha Alparslan Ercan Çağlayan, li Tirkiye'yê destpêk û geşedana bîrdoza netewe-dewletê û sepandina wê ya li ser kurdan, ji BasNûçe'yê re nirxand. Çağlayan ragihand ku hîma netewe dewletê di dema Mehmûdê II. de bi polîtîkayên navendîkirinê hatiye avêtin û bi Tanzîmatê, dû re jî di dema Evdilhemîdê II. de, bi Meşrûtiyeta II. re hişktir bûye û bi taybetî di dema İttîhad û Terakkiyiyan de şênber bûye. Çağlayan got ku wê demê nîşaneyên polîtîkayên netewe dewletê ên wekî navendîbûn, cihyarkirin, koçkirina bi zorê, asîmîlasyon û dîsasîmîlasyon li Anatoliya û Kurdistanê bibiryarî hatine sepandin û piştî dameziradina Komara Tirkiye'yê jî hem bi awayekî de-jure hem jî bi awayekî de-facto bi şêweya netewe dewletê şênber bûye û wisa domand; "Li gor min li Kurdistanê, biryara bişavtin û tirkkirina Kurdistanê di sala 1923'an de di Peyamnnameya Lozanê de hat girtin, sala sepandina van polîtîkayan, sala 1924'an e ku du bûyerên vê salê diyardeya înkarkirina kurdan bûn. A yekem di xala 88. a Makezagona 1924'an de dibêje 'her kes tirk e' û a duyem jî jiholêrakirina Xelîfetiyê bû ku bi sedsalan kurd jî tê de hemû pêkhateyên misilman di bin sîwanekê de kom dikirin lê piştî rakirina wê mafên nijadî ên kurdan hatine tunekirin. Digel vê jî polîtîkayên bişavtin û tirkkirinê bi awayekî sistematîk û sazkirî piştî serhildana Şêx Seîd a 1925'an hatine meşandin."

### 'Li Kurdistanê amûrên bîrdoziyê li dar in'

Çağlayan got ku bi navlêkirina Louis Althusser, "amûrên îdeolojîk ên dewletê" li Kurdistanê amûrên wekî perwerdehî, siyaset, çapemenî, Millet Mektepleri, Türk Ocakları, Halkevleri, Halkodaları û Köy Enstitüleri bûne û wek amûrên tadeyî jî leşker, qereqol, Umumî Müfettişlik, xetên rêhesinan, cihyarkirin (îskan) û nefîkirin ji bo tirkkirina kurdan hatine bikaranîn. Çağlayan got ku girîngtirîn amûrên Kemalîstan jî saziyên "Türk Ocakları" û "Halkevleri/Halkodaları" bûne ku Türk Ocakları ya di dema Meşrûtiyeta II. de avabûyî li aliyekî bi rewşenbîr, radyo û pirtûkan reformên Kemalîst veguhastine heta gundên herî asê, li aliyekî din jî bi çalakiyen wekî werzîş, huner û şanoyan civakeke sekuler ava dikirine. Çağlayan bale kişand ku mebesta sereke ya van saziyan a li Kurdistanê sepandina polîtîkayên bişavtin û tirkkirinê bûne ku piştî Serhildana Şêx Seîd ev sazî zêdetir bûne û di komcivînan de herî zêde nîqaşa polîtîkayên bişavtine dihatine kirin ku ev jî palpiştiya vê teza li ser Türk Ocakları'yê dike. Çağlayan bi bîr xist ku piştî girtina Türk Ocakları bo heman peywirê Halkevleri û piştre jî Halkodaları hatine damezirandin û armanca wan a sereke li cihên ku bi piranî kurdî û erebî tê axaftin, belavkirina zimanê tirkî û yekkirina gel di bin siwana tirkbûnê de bûye. Çağlayan anî ziman ku ji ber ku Amed, ji hêla kurdî û kurdbûnê ve bajarekî girîng e, Türk Ocakları û Halkevleri li Amedê xebatên taybet dikirine lê divê neyê jibîrkirin ku digel Amedê, van saziyan li hemû deverên Kurdistanê gelekî çalak xebat dikirine û bi vekirina Halkodaları'yê (1940) ev çalakî derbasî gundên asê jî bûne.

### Raportên bişavtinê: Zewaca keçên kurd

Akademîsyen Çağlayan bale kişand ser naveroka raportên ku ji bo bişavtinê hatine amadekirin û sepandina wan û got ku di dema desthilatdariya yekpartîtiyê de, di derbarê kurd û Kurdistanê de bi dehan raport hatine amadekirin û mijara sereke ya van raportan tirkkirina kurdan bûye û ji polîtîkayên wekî zewicandına keçên kurd a bi karmendên tirk re heta polîtîkayên cihyarkirinê û bi polîtîkayên cihyarkirinê; kurd, li nav tirkên rojhilata Anatolya'yê; gelheyên tirk ên ji Balkan, Qafqas û Anatolya'yê jî li Kurdistanê hatine bicihkirin û bi van polîtîkayan bişavtin hatiye bilezkirin. Çağlayan anî ziman ku digel ku girseyeke mezin a kurd bi van sepanan hatibin tirkkirin jî bi awayekî giştî ev polîtîka bi ser neketiye lewre; pêşî bi serhildanan kurd, li hemberî van polîtîkayan rawestiyane û bi hezarên ji wan hatine kuştin bi sedhezaran jî têrkî cih û warên xwe bûne û bi sedan cih û war jî tune bûne û wiha dirêjî da axaftina xwe; "Piştî vê kurdan heta ku ji destê wan hatiye xwe li derveyî pergalê hiştine û ji pevnivîsên van saziyan bi navendê re diyar dibe ku girseyeke mezin a kurdan tevlî ode, ocak, komele û partiyên li Kurdistanê damezirandî nebûne, di pevnivîsan de dibêje 'Di peydakirina endaman de tengasî tê kişandin û nêzîkî temamiya endaman jî bi karmendên tirk ên wekî polês, mamoste û hwd. pêk tê." Herwiha Çağlayan bale kişand ku ji bilî polîtîkayên bişavtinê, polîtîkayên sekulerkirinê jî hatine meşandin û li Kurdistanê bo vê polîtîkayê medrese hatine girtin û li şûna wan mekteb, Türk Ocakları, Halkevleri/Halkodaları hatine vekirin.

### 'Fermînebûna kurdî mîrateya raboriyê ye'

Çağlayan anî ziman ku digel ku îro polîtîkayên bişavtinê ên li ser ziman û çanda kurdî hinekî sist bûne jî zimanê kurdî hîn jî bi awayekî fermî nehatiye pejirandin û ev yek têkildarî mîrateya raboriyê ye û dom kir; "Kurd dikarin di serî de di qadên siyasî û rewşenbîrî de vê şaşiyê ji holê rakin, lê divê bê zanîn ku gihanekên ku îroyê ji raboriyê vediqetînin hene û ger ku ev gihanek bên piştguhkirin, wê şaşiya anakronîzmî ku pir caran hatiye dubarekirin. Wek nimûne; Di salên 1920 û 30'an de gelheya mezin a kurdan li gundewarê dijiyan û jê girîngtir xwendin û nivîsîna beşeke girîng a wan tune bû. Ji ber vê bişavtina kurdên xwedî jiyaneke parastî-girtî gelekî zehmet bû. Lê îro gelheya kurd a bajaran û rewşa xwendin û nivîsîna wan pir zêde bûye û ev yek jî bişavtina wan hêsantir dike. Her wiha belavbûna amûrên ragihandinê ên girseyî bişavtineke xwezayî bi xwe re tîne."



# Birayiya hezar serrane (II)



Nadire Güntaş Aldatmaz

Birayînî de gerek heskerdene, îtîmat û adalet bibo. Nê hîrê çî ke nêbî a birayîye birayîya rastkene nîya.

Ma ke edebîyatê tirkan de nîyada zafê eseranê tirkan de eşqîya kurd o, dizd kurd o, keso ke merdiman kişeno o kî kurd o. Fîlmanê tirkan de kî durum eynî yo. Tayê fîlman de kesê ke pîs û qefçil ê kurd ê. Fîlman de yan xizmekarî yê yan amele yê yan kî mensubê mafya yê.

Vateyanê verênan û îdyomanê tirkan de ancî nefret, warrodayene, hakîr vînitene esta. Taye numuneyê ke tirkan seba kurdan vatê nîyar ê:

"Acemi nalbant, Kürt eşeğinde dener kendini." "Ağaçtan maşa, Kürt'ten paşa olmaz.", "Alavere dalavere, Kürt Memet nöbete", "Çingen çalar, Kürt oynar.", "En iyi Kürt, ölü Kürt'tür.", "Eşeğe Kürt demişler, iki hafta saman yememiş.", "Kürdü koyma avluya, Kürt'ten olmaz evliya." / "Kürt'ten olsa da evliya, koyma avluya, ya samı çalar ya sambağa", "Kürdün aklı ya kaçarken ya sıçarken gelir.", "Kürt getirdiğini yemez, yemeden de gitmez.", "Kürt yer çarığına bakar.", "Kürt inadı, kuyruklu Kürt" ûsn.

Nê îdyomî û vateyê verênê tirkan her çî vanê.

Vateyê verênan yê kurdan de ez rastê çîyêde nîyanenî nêbîya. Vateyanê kurdan de tena qalê zulmê tirkan beno. Yanî tey henî warrodayene, hakîr vînitene yan kî nefret çin o. Dej esto, zulum esto. Mesela tayê kilaman de qalê "eskerê romî", "eskerê mistê korî" beno labelê qalê tirkan qet çin o. Tena çekuya "Tirkmane" hetê Dêrsimî de sey milqî (nengî) yena vatene.

Mîyanê tirkan de zaf kes bawero ke dimê kurdan esto. Eynî çitur ke mabênê sunîyan de hîna kî tayê kes elewîyan ra pers keno vano şima "mum söndü" virajenê.

Nefret hîsode henên o ke çimanê merdimî keno kor, mantiqê merdimî keno kone û zerrîya merdimî keno tarî. Nê vateyê verênan ê ke cor de nusîyayê pêro peynîya hîsê nefretî de peyda bîyê. No nefret merdimî çitur keno dişmen, çitur beno sebebê zulmê tarîxê her di şaran de, edebîyat û kulturê her di şaran de kî aseno.

Demek mabênê kurdan û tirkan de heskerdiş çin o. Tarîxê nê şaran de îtîmat kî çin o. Kurdî hema hema qet îdarekerdoxî nêbîyê. Ê tim eskerê tirkan bîyê, seba înan şer kerdo. Îtîmatê îdarekerdoxanê dewleta tirkan ewru kî bi kurdan çin o. Zaf rey kî îspat bîyo, no ware de numuney zaf ê. Numuneyo tewr newe kî wezîrê HDPyî yê. Seke şima kî zanenê ê wezîranê HD-Pyî nêfînê re nêzdîyê xo. Ge-ge bi xo anê re ziwan ke kurdî xiyanete re înan kenê. (Hereketê Şex Saîdî ûsn.)

Heta ewru key ke kurdan vengê xo vet derhal muslumanîye mane kerdêne û vatêne "birayîya ma ya hezar serrane". Kurdan vileyê xo kerdêne çewt û vengê xo birnayêne. La ewru kurdî şîyê ser ke na birayîye tena tirkan rê gureyena, kurdan rê faydeyê xo çin o.

Wexto ke qalê na birayîye bî yew mesela yena re mi vîrî. Rojê dewa ma de dewijî danê pêro. Kalikê mi yewî gêno xo dest, dano piro, sereyê eyî şikneno, orteyê gonî û gonaşîrî de verdano, nişeno re ser senik maneno ke merdimî bixenekno. Çitur ke beno mêrik destê kalikê mi ra xo xelesneno ra vejîno re kalikê mi ser. Na rey kî o galim keno ke heyfê xo bigîro. Canê xo zaf deja yo, bi hêrs û sîdet dano piro. Kalikê mi vano "Wîî Alê ma, ma merdimê yewbînanîme, ti çitur dama mi ro!" Ap Alî pêrodayiş ca verdano nêverdano ez nêzana. Ez vana belkî Ap Alî nê qiseyan ser o mahçup bîyo û kalikê mi verdo ra. Yan kî eksê ci belkî vato "Qey to ke da be mi ro ma merdimê yewbînan nêbîme, ma o wext kî biray nêbîme!" Ez ke xelet nîya Ap Alî derhal kalîkê mi verdano ra û şono keyeyê xo. Çike kalikê mi tenena pîl o û dewrêş o.

Huqukê birayîya tirkan (Bi tirk û tirkan qesta mi zîyadeyê xo dewlete û hukumatî yê, şar nîyo. Çike şarê tirkan bixo kî destê dewlete de heşîrîye der o, xebera xo çin a.) sey yê kalikê mi û yê Ap Alî yo.

Huquqê birayîye de gerek adalet bibo. Cayo ke, karo ke tede adalet çin o, uca de her çeşît xirabinîye esta. Seba na bêadaletîye numuneyo tewr muhîm ziwan o. Ziwanê kurdan (kirmanckî yan kî kirdaskî ferq nêkeno) tim rastê neheqîye bîyo. Çimanê înan de kurdkî heta nika ziwan nêbîyo. Goreyê înan çend ziwanî (tirkî, erebkî, fariskî) kewtê têorte û kurdkî winî virazîyo. Ey kî caverdîme, qiseykerdena kurdkî bîle tomete bîya. Halbukî seba averşîyayîşê tirkî TDK awan kerdo. Yanî bêadaletîye tekilîya kurdan û tirkan de zaf a.

Nika kurdî sey Ap Alî ancî yenê xapînayene yan kî vanê "Nêê êdî bes o. Heta nika seba xatirê birayîye (!) ma vengê xo nêkerd labelê şima no nîyetê ma yo rind tena seba kara xo gurena. Ne huquqê dînan (îslamîye ûêb.) de ne kî yê însanîye de cayê birayîya nîyanene çin o."

Seba haştîye, seba adaletî luzimîya birayîye çin a. Merdim ke merdim bo, merdim ke însan bo, merdim ke adîl bo seba pîya ciwîyayîşî bes o.



# Mintiqaya Golanê Serdinan



**Aydın Batur**

Mintiqaya Golanê Serdinan vakurê rojhelatê Çewlîgî de ya. Na mintiqa verardê Koyanê Mergê Mîrî de, mabeynê Wareyî Mergê Mîrî, dewanê Çan, Tuêryeg û Fexrûnî de manena. Uca panc hebî golî estê. Nê golan ra, a yewin Golbaşîn a. Diyîn Golê Şêk, hîreyin Golê Armenîyan û çahar û pancin zî Golê Tuêryegî yê. Berzîya na mintiqa derya ra nizdîyê 1730 metreyî ya. Raharê wesayîtî nêşino na mintiqa. Keso ke wazeno şîyero, verê cû bi wesaît şîno Çano verên û uca ra 30-40 deqayî peya şino raseno uca.

**Golbaşîn:** Na Gole nêzdîyê Çanî de ya. Kes Çan ra peya bivecîyo û hetê vakurî ra şîyero na mintiqa, verê cû yeno û na gole vîneno. Gola Golbaşîn zereyê yew daristanî de ya. Çanijî semedê heywanan û erazîyê xo awe na gole ra gênê. Na gole awa xo binê hardî ra gêna û hamnanan zî qet zuwa nêbena. Wexto ke dewlete nameyê dewan û cayanê kurdan bedelna, nameyî na gole "Gölbaşı Gölü" na pa û nameyê Çanî zî "Göltepesi köyü" na pa.

**Golê Şêk:** Gola diyin a. Mabeynê Golbaşîn û Gola Armenîyan de manena û yew gola qij a. Awa xo şilîyan ra gêna û serra ke zaf germ bo hamnanî bena zuwa.

**Golê Armenîyan:** Golê Şêk ra dima na gole yena. Mintiqaya Golanê Serdinan de gola tewr girde Golê Armenîyan a. Awa xo binê hardî ra gêna û qet zuwa nêbena. Na Gole mabeynê Golê Şêk û Golanê Tuêryegî de ya. Dewlete nameyê na gole bi tirkî "Kuzu Gölü" nayo pa.

**Golê Tuêryegî:** Nê di golî nizdîyê Dewa Tuêryegî de yê. Golê Armenîyan ra cêr ca gênê. Beynateyê Golê Armenîyan û Golanê Tuêryegî nizdîyê 750 metreyî yê. Vanê nê golî awa xo Golê Armanîyan ra binê hardî ra gênê.

Ma zanê ke derheqê zafê golan de efsaneyî estê. Derheqê Golê Armenîyan û Golanê Tuêryegî de zî yew efsena esto. Senî ke cinawirê Gola Wanî esto, wina yew cinawirê nê golan zî esto. No cinawir yew mar o, zaf gird, sey ejdarhayî yo. Vanê mabeynê Golê Armenîyan û Golanê Tuêryegî de binê hardî de yew qenal esto, no ejderha nê qenalî ra geyreno, ge şino a gole, ge şino golanê bînan.

Serra 1925 de wextê Herbê Şêx Seîdî de, Şêx Seîd ameyo na mintiqa, hem Fexrûn hem Çan de derheqê herbî de yew kombîyayiş virasto. Çan de şêxî estê û mabeynê nê şêxan û famîlyaya Şêx Seîdî de eqrabatî esta.

Ti şîyerî kamcayê welatê ma uca yew rindî esta. Labelê yew meselaya xirabe zî bîya û yew dej zî esto. Cayê Golê Armenîyan cayêko wina yo. Vanê wexto ke terteleyê armenîyan de armenî qetil kerdê û eştê na gole. No rid ra na gole ra vanê Golê Armenîyan.

Nê armenîyê ke na gole de qetil biyê kam ê û kamca ra yê? Ma nêzanî labelê o wext Çewlîg de derheqê terteleyê armenîyan de çi bîyo, ma eşkenî ey ser o yew texmîn bikeri.

Ma zanê ke tarîxo qedîm ra nat zaf qewmî welatê ma de pîya bi biratî ya ciwîyayê. Beynateyê kurdan û armenîyan de problem çine bi. Hetta beynateyê înan de kerwatî bibî. Armenîyan karê sinetî kerdêne, kurdan zî hîna zaf weyekerdişê heywanan û ziretî wa mijul bî. Beynateyê înan de sulh û aşitî bibi. Mabeynê nê şaran de hetê iqtîsadî ra yew munasebeto zixm bibi. Labelê wextê nizdîyê peynîya Dewlata Osmanîyan de bi nameyê Ittîhad we Teraqqî yew rêxistine ronîya. Na rêxistine waharê fikranê faşîstîye bî, tirkperest bî û îdareyê dewleta Osmanî girewt xo dest. Xodestgirewtişê îdareyî ra dima waşt şarê ke welatê Osmanî de ciwîyenî bibê misilman û tirk. No rid ra şarê welatî verda yewbînan, fesadîye eşte mîyanê hemwelatîyan. Zafê cayê dewleta Osmanîyan de çeteyî organîzê kerdî û inî çeteyî verdayî armenîyan ser. Çeteyan êrîşê armenîyan kerd, qij û tûtê înan kiştî, mal û milkê înan talan kerd.

**Saxmendeyê ma zî ameyê Çan de xo eşto bextê (îltîca kerdo) Şêx Eyub Efendî û veyşan, bêdaru û tersê ganî xo ver, her yew hetêk a şîyo bîyo vila. Ewlad û eyalê ma zit-bulit bine lingan de mendê.**

Hûmara 42. ya kovara Vateyî de bi nameyê "Armenî û Şêx Eyubê Çanî" ya yew nuste û yew belge pa neşir bîyê. Belge yew telgraf o, hetê hîrê armenîyanê Çewlîgî ra serra 1895 de Oxnût ra Trabzonî ser ra erşawîyayo bi Îstanbul û şîyo padîşayê Osmanîyan rê. Nê armenî Fergîs, Bedros, Karabet ê. No belge ra ma fahm kenê ke Çewlîg de zî derheqê armenîyan de wina weqîetê xirabî bîyê. Orjînalê belgeyî bi ziwanê osmanîyan nusîyayo, Abdulnasir Korkutata û N. Celalî no belge çarnawo zazakî ser:

"Ê hîri armenîyê Çewlîg telgrafê xo de Padişahê Osmanî ra vanê ke: Homa Teala şima, saltanatê şima de daîm biko ke seba nê duayê ma tim bi şima yê. Ma şarê dewê Çewlîgî ke girêdayeyê qezayê Çabaxçurî yê. Merdimê nê eşîranê ke domaleyê ma de yê, înan ra nêzdîyê di hezarî merdimanê çekdaran hêrîşê ma kerdo. Dewê ma ra des heşt tenî kişîyayî, malê ma yê keyan û dikanan û mêşnayê ma yexma (talan) kerdî û zaxîreyê qijanê ma zî xesp kerdo. Ber û pencereye bananê ma berdî û dêrê ma zî talan kerd. Saxmendeyê ma zî ameyê Çan de xo eşto bextê (îltîca kerdo) Şêx Eyub Efendî û veyşan, bêdaru û tersê ganî xo ver, her yew hetêk a şîyo bîyo vila. Ewlad û eyalê ma zit-bulit bine lingan de mendê. Semedo ke edaletê şima yo berz heqareto winayîn qebul nêkeno; kesanê ke curetê nê gureyan kerdo, ganî derheqê înan de ceza îcra bibo, malê ma tepîya bidîyo ma û îstirehet û rehetîye ma temîn bibo, sewqkerdişê yew tabûrê eskerî Qazayê Çabaxçûrî pabesteyê fermandayîşê şima yo."

Ma vînenê ke nê hîrê armenîyanê Çewlîgî no telgraf şawito Îstanbul û Îstanbul ra ardîm waşto. Ê ça ra bizanê ke fermanê armenîyan Îstanbul ra vejîyayo û nê hedîseyî Îstanbulî ra organîze benê.

No belge mojneno ma, nê armenîyê ke îltîcayê Şêx Eyub Efendî kerdo, îhtîmalo gird, Şêx Eyub Efendî Çan de yew mude armenî pawitê. Zafî tutê armenîyan nimitê û xelisnayê. Nika Çan de qijê ê tutan ra zaf famîlyayî estê. Labelê quwetê Şêx Eyub Efendî qedîyayo û nêeşkawo hîna zaf armenîyan bipawo. Ê çeteyê ke organîze bîyê, seba cayo berz ra çekan û paştî girewta inî armenî verê Gola Armenîyan de qetil kerdê û eştê na gole. Nika zî uca esteyê însanan estê.

Vanê ganî însan zulmê zaliman ra ney, bêvengîya însananê hewlan ra biterso. Nê hedîseyê xirabî ke însananê zaliman na dinya ser o kerdê, ganî însanê ma bizanê û verba nê zulmî vinderê. Eger xebera kesî nê zulmî ra çin bo, însano bêwijdan hema zaf mazluman sey verekan serebirneno, kişeno û erzeno golan. Nameyê golan zî "Gola Vereka (bi tirkî: Kuzu gölü)" nano pa.

*Çewlîg, 02.08.2015*

